

## Fethullah Gulen û Pirsgirêka Kurd li Bakurê Kurdistanê
11

**Bejan Matur piştî hevdîtina ligel Gulen pirsên Rûdawê bersivandin**

نزیکەی ١٠ هەزار کورد لە
ئەورووپاوە گەڕاونەتەوە کوردستان
2

**کۆچی پێچەوانەی تاراوگەنشینان بۆ نیشتمان دەستی پێکردووە**


# Rûdaw

ÇAPA EWRÛPA

Xwendevanên Rûdawê bêtir dizanin





## Laşfiroşî li Amedê
**Beşa II.**

Rûpel ▶4


Deutschland 1,50 Euro | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK

Hejmar / Nr. 78 | 11 Çile / Januar 2010


## Gelo çi di navbera navenda K-TV û studyoya Ewrûpa de heye?

Kurdistan TV (K-TV) berî 12 salan weke yekemîn televizyona kurdî ku weşana xwe ji Kurdistanê dike, dest bi karê xwe kir. Karmendên K-TV yên studyoya Ewrûpa ji bo Rûdawê axivîn û rexneyên tund li K-TV kirin. Karmendeke nû diyar kir ku "di navbera navenda K-TV û studyoya Ewrûpa de hemahengî tune" û bi dilgiranî got ku K-TV hurmeta westiyana wan nagire. Karmendekî berê jî got ku K-TV programên wan naweşîne. Nivîskarekî Kurd jî gazinc kirin ku carekê ew ji bo beşdariya di programeke K-TV de bi dûriya 700 kîlometreyan çûye K-TV, lê program nehat weşandin. Rêvebirekî K-TV got ji ber sedemên girêdayî teknîk û naverokê hin program nayên weşandin. ▶7

### Çand û Huner

**Şoreş û rêzefilm**

Gulistan Perwer li Dihokê niştecîh bûye û dixwaze derhêneriya rêzefîlman bike ▶8/9

### Kurdistan

**Pirsgirêka Kurd**

KURD-KAV û Tevgera Reformê konferansê amade dikin û Erdogan jî tevlî dibe ▶5

### Diyaspora

**Ciwanên Kurd li Afrîka Başûr bûn**

34 ciwanên Kurd beşdarî festîvala ciwanan bûn, lê ala Kurdistanê beşdarên Ereb aciz kir ▶11

**Cîgirê Serokê PDK'ê, Nêçîrvan Barzanî ji bo Rûdawê diyar kir:**

# PDK hemû dozên li hember rojname û nivîskaran paşde dikşîne

Di yekemîn hevpeyvîna rojnamevanî ya piştî hilbijartina wî weke Cîgirê Serokê Partiya Demokrat a Kurdistanê (PDK) de, Nêçîrvan Barzanî ji Rûdawê re diyar kir ku PDK bi azadiya bîrûbaweriyan girêdayî ye û wek nîşana nêtpakiya xwe PDK'ê biryar daye ku hemû dozên xwe li hember hemû rojname û nivîskaran paşve bikşîne û wiha pêdeçû: "Em hêvîdar in ku ev yek weke nêtpakî bê dîtin û em tevgereke bêtir bi berpirsyarî di karê rojnamevaniyê de li Kurdistanê bibînin, ti rojnamevan û rojname bi kîn kar nekin, ji ber ku ev yek dûr e ji azadiya bîrûbawerî û karê rojnamevaniyê." ▶2






Wêne: DIHA

# Zimanê kurdî êdî pere dike

- Dema daxwazên qebûlkirina zimanê kurdî li Bakurê Kurdistanê xilas bû, êdî zimanê kurdî daket bazaran û ev yek wê bibandor be. Kêmnetewên Tirkiyê jî dan ser şopa Kurdan ▶3







Great Britain




www.rudaw.net
info@rudaw.eu

Cîgirê Serokê Partiya Demokrata Kurdistanê, Nêçîrvan Barzanî ji bo Rûdawê diyar kir:

# Rexnegirtin karên rojnamevan e û em xwe weke dabînkerên wan azadiyan dibînin

Nêçîrvan Barzanî diyaloga di navbera çapemenî û desthilatdariyê de girîng dibîne û dibêje: “Em rexnegirtina li ser karê hikûmetê jî baş dibînin.”



Barzanî dixwaze rojnamevan û nivîskar niyeta wan a pak bibînin

**Hewlêr (Rûdaw) -** Cîgirê Serokê Partiya Demokrat a Kurdistanê, Nêçîrvan Barzanî di hevpeyvîneke ligel Rûdawê de ragihand ku PDK bi azadiya bîrûbaweran girêdayî ye û ji bo nîşandana nêtpakiyê biryar daye hemû dozên li ser hemû rojname û nivîskaran paşde bikşîne.

Nêçîrvan Barzanî di yekemîn hevpeyvîna rojnamevanî de, piştî ku di kongreya Partiya Demokrat a Kurdistanê de weke Cîgirê Serokê PDK’ê hat hilbijartin, behsa encamên kongreyê, rewşa siyasî, pêgîriya PDK’ê bi pêşxistin û garantîkirina azadiyan û hukmê saziyên sivîl li Kurdistanê dike. Nêçîrvan Barzanî derbarê xwenîşandana ku li Silêmaniyê li dijî îmzeya Serokê Herêma Kurdistanê li ser yasaya organîzekirina xwenîşandanan li Herêma Kurdistanê pêkhat, ragihand ”Serokê Herêma Kurdistanê li ser bingeha ku hemû fraksiyonên Parlamena Kurdistanê beşdarî danûstanên sebaret wê yasayê bûne, herwiha ji ber ku ew yasa li ser bingeha erkê hikûmetê li himber hevwelatiyan hatiye avakirin, lê ne li ser bingeha astengkirina mafê xwenîşandanê, wî ev yasa îmze kir. Deshilatên Serokê Herêma Kurdistanê û bingeha desthilatdariyê li Kurdistanê ji sala 1992’an li ser esasê demokratîk û misogerkirina azadiyan hatiye damezrandin û yekemîn kesê ku di dema serhildanê de jî banga vê yekê kir, her Serok Barzanî bû û ew niha jî ji hemû deman bêtir pêgîrî wan bingehan e. Lê bi baweriya min Hikûmeta Herêma Kurdistanê xemsarî kir û nekarî wê yasayê ji hevwelatiyan re ron bike, bi şêweyekê ku hevwelatiyan nekin aletên kar û milmilaneyeke siyasî ji vê corê ku tê de Serokê Herêma Kurdistanê bibe nîşan.”

Derbarê bêtir vebûyîna PDK’ê ku berî kongreyê ji aliyê serokatiya PDK’ behsa wê yekê dihat kirin, herwiha derbarê çawaniya tevgera ligel medyayê bi şêweyekî vekirîtir, Nêçîrvan Barzanî got: ”Partiya Demokrat a Kurdistanê qet ne dijî azadî bîrûbaweriyê ye, me hertim gotiye ku divê di navbera rojnamevan û deshilatê de diyalog hebe, lê ne kîn û dijminatî. Divê deriyên belavbûna zaniyariyan bên vekirin û li himber vê jî divê rojnamevan jî bi berpirsyarî û pêşeyî karê pîroz ê rojnamevaniyê bikin û yasaya peywendiya navbera wan de organîze bike. Yasaya organîzekirina karê rojnamevaniyê li Kurdistanê jî ku li serdema kabîneya pêncemîn hat danîn, piştî ku li parlamenê hin guhertin li ser hatin kirin, ji aliyê Serokê Herêma Kurdistanê hat red kirin, ew yasa ji bo misogerkirina yasayên azadiya karê rojnamevaniyê bû li Kurdistanê.” Her di wê derbarê de Nêçîrvan Barzanî got: ”Weke nîşandana nêtpakiya PDK’ê, em radighînin ku me weke PDK biryar daye hemû skala û dozên xwe li ser rojnamevan û nivîskaran paşde bikşînin, em hêvîdar in ku ev yek weke nêtpakî bê dîtin û em tevgereke bêtir bi berpirsyarî di karê rojnamevaniyê de li Kurdistanê bibînin, ti rojnamevan û rojname bi kîn kar nekin, ji ber ku ev yek dûr e ji azadiya bîrûbawerî û karê rojnamevaniyê.” Barzanî herwiha got ”Ez di dema serokatiya hikûmetê de û di karê xwe yê niha de jî bi wê yekê re bûm û ez ê bimînim jî ku bi şêweyekî saxlem kar ligel rewşa rojnamevaniya li Kurdistanê bê kirin, hevdîtina di navbera deshilat û rojnamevanan de hebe, bi vê şêweyê em dikarin ji rewşa lihevtênegihiştin û rojnamevaniyeke navzirandinê rizgar bibin ku ev jî ne armanca ti rojnamevanekî profesyonel e.”

Barzanî herwiha amaje bi wê yekê da ku dîroka siyasî ya PDK’ê bi rojnamevanên azad dewlemend e, ji bo mînak di destpêka salên şêst û heftiyan de, dema Partiya Demokrat a Kurdistanê destûra karkirina fermî wergirt, yan jî dema ku desthilatdar bû. Niha jî biryar ew e ku azadî bê parastin û berdewam kir: ”Me berê jî hawara xwe gihandiye yasayê, ji bo wê yekê ku yasa serwer be, ji ber ku rojnamevan jî dizanin ku çûna bin siya yasayê tê wateya serwerîkirina yasayê ye, lê ne binpêkirina yasayê.” Her derbarê baweriya bi azadiya bîrûbaweriyan, Nêçîrvan Barzanî got: ”Veguhestina zanyariyan, rexnegirtin û danûstand dirustkirin ji karên rojnamevan û nivîskaran e û em jî ne dijî wê yekê ne, lê em xwe weke dabînkerên wan azadiyan dibînin. Her di wê çarçovê de, em di wê baweriyê de ne ku rexnegirtina li kar û cîbicîkirinên Serokê Herêma Kurdistanê û hikûmetê jî karekî asayî û baş e. Ev mafê xelkê ye, ji ber ku Serok Barzanî serokê vî xelkî ye û hikûmet jî hikûmeta vî xelkî ye.”

**Tevahiya hevpeyvîna ligel Nêçîrvan Barzanî wê di hejmara pêş ya Rûdawê de bê weşandin.**

## Rûdaw xwe nû dike

**Em xwendevanên xwe agahdar dikin ku ji destpêka meha Sibatê 2011 û şûnde Rûdaw wê bi çendîn xizmetên nû, guhertinên naverokê û guhertina roja derketinê, pêşwazî li xwendevanên xwe bike.**

**Ji destpêka Sibatê 2011 û şûnde wê roja derketina Rûdawê ji sêşemê bibe pêncşem. Aboneyên Rûdawê yên li Almanyayê jî wê roja înê rojnameya xwe wergirin. Xizmetek din ku em li ser daxwaza xwendevanên xwe pêşkeş dikin, belavkirina pîrozbahî, sersaxî û agahiyên derbarê çalakiyên hunerî, konsert, çalakiyên ciwanan û hwd. e. Û ya herî baş: ev peyamên we wê belaş bên belavkirin. Me xwendevanên xwe yên biçûk jî jibîr nekirine, ji despêka Sibatê ve rûpelek zarokan jî wê dilê biçûkên me geş bike. Çendîn guhertin û nûbûnên din ji hene. Çaverê bin.**




**Rûdaw**

**Rojnameyeke siyasî û heftane**

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Serokê Civata Rêvebir**
Nûredîn Weysî
nuradinwaisi@rudaw.net

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Firat Kelehkî
kelehkî@yahoo.com

Azad Kurdî
azadKurdi@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Sîdar Bengîn Epozdemir
sidar@rudaw.nl

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Dipl. Kfm. Abdulletif Canimana
info@canimana.de

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net
info@rudaw.eu

Rûdaw bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.

## WikiLeaks: Tirkiyê xwestiye beriya vekşîna Amerîka ji Îraqê pirsgirêka PKK'ê bi dawî bîne



*Rûdaw - Li gor dokûmentek nû ya ku malpera WikiLeaks belav kiriye û ji aliyê Balyozxaneya Amerîka li Anqere di 16'ê Sibata sala borî de hatiye nivîsandin, Tirkiyê xwestiye berî vekişîna Amerîka ji Îraqê pirsgirêka PKK'ê çareser bike. Her di wê dokûmentek de tê gotin ku Fermandarê Giştî yê berê yê Artêşa Tirkiyê, Ilker Başbug nîgeraniya xwe ji Robert Gates re ragihandiye û gotiye: "Di demekê de ku Tirkiye bi şêweyekî serkeftiyane kariye metirsiya PKK'ê kêm bike, lê piştî kişandina leşkerê Amerîkayê wê bidawîanîna wê metirsiyê zehmet be." Başbug di dawiyê de dibêje: "Tirkiye pêwîste vê pirsgirêkê bi dawî bîne, berî ku prosesa vekişîna Amerîka bi dawî bê."*

# Kêmnetewên Tirkiyê dan pey Kurdan

Dirûşmeya BDP'ê ya 'Jiyana bi du zimanî' kêmnetewên din ên li Tirkiyê dijîn jî xiste nava tevgerê. Nûnerê Suryaniyan, Çerkezan, Lazan, Ermenî û Ereban ragihandin ku ew ji tunebûnê û asîmîlasyonê ditirsin.

**Firat Kelehkî**

Li Bakurê Kurdistanê Kurd li ser 'jiyana duzimanî' pêdagir in û rayedarên dewleta Tirk jî dibêjin tiştekî wiha ne mimkun e. Hinek partiyên siyasî yên Tirk jî vê pêngavê wek projeya serhildanekê û parçekirina welat dinirxînin û projeya otonomiya demokratîk jî wek amadekariya serhildanekê ya ji bo parçekirina welat dibînin.

Piştî ku gelê Kurd biryar da derbasî jiyana duzimanî bibe, Asuriyên Midyadê jî piştgirî dan vê daxwazê û xwestin di dibistanan de bi hevkariya dewletê perwerda zimanê Suryanî jî bê dayîn û ew jî dixwazin derbasî jiyana duzimanî bibin. Li aliyê din nûnerên kêmnetewan ên wek Laz, Çerkez, Ereb û Ermenî jî daxuyandin ku ji bo zimanê wan nemire pêdiviya perwerda bi zimanê zikmakî heye.

### 'Em dixwazin navên gund, tax û navçeyên me bên vegerandin'

Derbarê mijarê de Berdevkê Însîyatîfa Demokratîk a Asurî, Suryanî û Keldaniyan Jakop Gabrîel bo Rûdawê axifî û ragehand ku ew piştgiriyê didin daxwaza Kurdan û got: "Me di destpêkê de piştgiriya daxwaza BDP'ê kir, lê wek mafekî xwezayî û rewa em jî dixwazin zarokên me bi zimanê xwe perwerdê bibînin û astengên heyî bi sererastkirina yasayan bên rakirin."

Gabrîel da zanîn ku wek Însiyatîfa Demokratîk a Asurî, Suryanî û Keldaniyan li Tirkiyê û Bakurê Kurdistanê piştgiriya 'jiyana duzimanî' dikin û got: "Em dixwazin li bajar, gund, tax û navçeyên ku piraniya wan Suryanî lê dijîn ligel navên tirkî navên suryankî jî bên bikaranîn. Niha me bi du zimanan navê komela xwe û çend gundên xwe guhertine û li ser tabeleyan bi tirkî û suryankî navê wan nivîsiye."

### Yidiz: Kurd li Tirkiyê statuyekê dixwazin ne tenê mafê ziman

Serokê Gruba BDP'ê li Meclîsa Tirkiyê Bengî Yildiz got ku mijar ji xwe siyasî ye û wiha axifî: "Ev ji xwe daxwazeke siyasî ye. Bê guman xwezayî ye jî lê Kurd nabêjin tenê em ê bi zimanê xwe biaxifin û perwerdê bibînin. Kurd li Tirkiyê çawa li welatên din û Başûrê Kurdistanê jî statuyek heye, li Tirkiyê jî bi destûra bingehîn statuyê dixwazin. Em ne tenê dibêjin bila ziman hebe û xilas, wê zimanê me li ser çi statuyekê hebûna xwe berdewam bike? Lewra Kurd xwesteriya demokratîk û mafê ziman bihev re dixwazin."

### 'Pirs ketiye rojevê divê em daxwaza mafê xwe bikin'

Li ser pirsa gelo bi awayekî fermî ji dewletê xwestine di dibistanan de bila perwerda bi zimanê suryankî jî bê dayîn, Jakop Gabrîel wiha bersiv da: "Niha ji ber mijar ketiye rojevê em çima daxwaza mafê xwe nekin! Ji bo em dîrok, çand û zimanê xwe zindî bikin dixwazin li zanîngehan beş bên vekirin, li dibistanên seretayî û navendî jî bi hevkariya dewletê zarokên me bi zimanê suryankî bên perwerdekirin. Wek hemû gelan divê mafê Suryaniyan jî bi destûrê bê parastin. Pêwist e hemû gelên li Tirkiyê, mafên xwe yên demokratîk, bi azadî nerînên xwe bînin ziman."

### 'Divê di destûreke nû de hemû netewe cîh bigrin'

Li ser meseleya gelo piştî vê piştgiriya Asuriyan wê pirs aloztir bibe yan jî bi awayekî siruştî bê dîtin, Serokê Koma BDPê Bengî Yildiz got: "Li ser vê axê ji bilî Kurd û Tirkan, gelên din jî dijîn wek Suryanî, Asurî, Kildanî û etnîkên din. Lê ger em destûreke din çêkin pêwist e gelên din jî tê de cîh bigrin. Dema Suryanî û gelên din jî daxwaza mafê zimanê dayikê û perwerda bi zimanê xwe dikin ev rastiyek e û divê Tirkiye rûbirûyê vê rastiyê bibe. Em nikarin bibêjin bila Asurî, Laz û Elewî neaxifin, êdî demeke wiha hatiye pêwist e Tirkiye gavan bavêje. Li ser van daxwazên wiha jî divê em wek Kurd xizmetê bikin."

### Komeleyên Çerkezan kursên ziman didin

Li Tirkiyê ji bilî Tirk û Kurdan gelê xwediyê hejmara zêde Çerkez in û tê texmînkirin ku li Tirkiyê 6 milyon Çerkez dijîn. Serokê Giştî yê Federasyona Komeleyên Kafkas Cumhur Bal, daxuyand ku ji bo jiyandina çandekê faktora herî girîng ziman e û got "Lê mixabin îro li cîhanê gelek ziman winda dibin." Bal da zanîn ku ji bo Çerkez zimanê xwe jibîr nekin di 30 komeleyan de kursên ziman didin."

Bal daxwaziya jiyana bi du zimanî û girîng dibîne û dibêje: "Divê hemû cudahî wek dewlemendî bên dîtin. Divê tenê Kurd ji bo kurdî tênekoşin, Ereb jî ne tenê ji bo erebî têbikoşin. Parastina zimanan di bin berpirsiyariya her kesî de ye. Qedexe û rêlibergirtin sucên mirovahiyê ne." Cumhur Bal balkişand ser perwerda bi zimanê zikmakî jî û got li cîhanê ji bo perwerda zikmakî gelek mînakên balkêş hene. "Tirkiye divê sûd ji van mînakan bigire û pêkbîne. Me bi ankêtekî ji Çerkezan pirsî 'Gelo hûn naxwazin di rêza yekem de çi wenda bikin?' Bersiva wan ziman bû."

### 'Siyaseta yek netew biserketiye'

Nivîskarê Rojnameya Agos a Ermenîkî Pakrat Estukyan jî ragihand ku cihê ku asîmîlasyon lê heye gel zimanê xwe jibîr dikin û got gelek Kurd û Ermenî li bajarên mezin ên Tirkiyê dijîn û ev jî dibe sedemê jibîrkirina ziman. Estukyan da zanîn ku ligel dibistanên Ermeniyan ên taybet hene, siyaseta dewleta Tirk a 'Yek netew' biserketiye û wiha axivî: "Eger Ermeniyekî zarokê xwe neşîne dibistana xwe divê xwe rexne bike. Lê siyaseta Tirkiyê ya netewperest û yekalî ji hemû cudahiyan hez nake."

### Laz: Zimanê me dimire

Lêkolînerê zimanê Lazan Ali İhsan Aksamaz ragihand ku ideolojiya fermî, nahêle zimanê lazkî yê Rojhilatê Behra Reş û Basûrê Rojavayê Kafkasyayê derbasî nifşên nû bibe û got "Ne hikûmet, ne jî muxalefet ti wateyê nadin lazkî. Ji bo lazkî dem zêde nemaye. Ago lazki dimre! Ji bo pêşxistin û mayîna hemû zimanan dive nûnerên van zimanan bên cem hev û 'Projeya Biratiya Zimanan' saz bikin."

### 'Ereb xwedî li zimanê xwe derneketin'

Serokê Komeleya Cand û Alîkariya Ereban Şukru Kirboga da zanîn ku li Bêdlîs, Sêrt, Mûş, Êlih, Antakya, Riha û Mêrdînê di navbera 5 û 7 milyon Ereb hene û ji bo zimanê zikmakî jibîr nekin perwerda bi zimanê xwe dixwazin. Kirboga da zanîn ku Erebên li Turkiyê hatine jibîrkirin û xwest ku astengiyên li pêşiya zimanên zikmakî bê rakirin û perwerde bi zimanê zikmakî ji aliyê makezagonê ve bê parastin.

### 'Hemû partiyên siyasî ketine pey bidestxistina dengan'

Gelek rewşenbîrên Tirk û raya giştî ya cîhanê jî mijara zimanê dayikê wek mafekî xwezayî û bingehîn dibînin. Li gor Prof. Dr. Mehmet Altan, axaftin û perwerda bi zimanê dayikê mafekî xwezayî ye û divê Tirkiye ji vê netirse. Lê di heman demê de dibêje ji ber ku bûye mijareke siyasî çareser nabe û bo Rûdawê wiha axifî: "Divê mirov ji siyasetê dûr û di warê mafê bingehîn û raderbirînê de binirxîne. Hemû kes û partiyên siyasî niha ketine pey bidestxistina dengan, li ser ol, mezheb û netewe, loma pirs çareser nabe. Lê zimanê dayikê mafekî bingehîn e û divê bê dayîn. Ji vê rewatir jî, tiştek tune."



**Cumhur Bal (Federasyona Komeleyên Kafkas):** Qedexekirina ziman sûcê mirovahiyê ye. Me bi ankêtekî ji Çerkezan pirsî, 'Gelo hûn di rêza yekem de naxwazin çi winda bikin? Bersiva hemûyan 'ziman' bû.



**Pakrat Eskutyan (Nivîskarê rojnameya AGOS):** Gelek Kurd û Ermenî li bajarên mezin dijîn û zû asîmîle dibin. Siyaseta Dewleta Tirk a 'Yek netew' biserketiye. Ligel astengiyan dibistanên Ermeniyan hene.



**Şukru Kirboga (Serokê Komela Ereban):** Erebên li Tirkiyê hatine jibîrkirin. Ji bo 5-6 milyon Erebên li Tirkiyê dijîn zimanê xwe jibîr nekin, em perwerda zikmakî dixwazin.

Li Amedê laşfiroşî - Beşa II.

# Hemû kes dizane, tenê dewlet nizane!

Rûdaw berdewama dosyaya dubeşî derbarê laşfiroşiya li Amedê diweşîne. Di vê beşê de Rûdaw çavekî diavêjê paş perdeya organîzekirina vî karî û nerînên saziyên jinan. Seroka Navenda Şêwirmendiya Jinan (SELIS) diyar kir ku tenê li navçeyekê 250 malên laşfiroşan hene. Endama saziya jiyan KAMER jî got ku li Amedê laşfiroşî êdî bûye sektorek û gelek kes ji vê sektorê rant bi dest dixin.


Tê gotin ku li Amedê di 5 hezar malan de laşfiroşî tê kirin

**Amed (Rûdaw) –** Li bajarê Amedê ji kî bê pirsîn derbarê laşfiroşiya li bajêr de hejmareke pir mezin didin û rasterast navên cihên ku lê laşfiroşî tê kirin rêz dikin, lê digel ku hejmara laşfiroşên li Amedê bi hezaran tê îfadekirin jî heta niha ti lêkolîn û xebateke zanyarî nehatiye kirin. Tişta balkêş ew e ku li bajêr haya hemû kesî ji vê sektora mezin a laşfiroşiyê heye, lê tenê haya dewletê jê tune ye!

Rojnameya me Rûdaw di beşa duyemîn a nûçeya laşfiroşiyê de, çerxa laşfiroşiyê, qanûnên li Tirkiyeyê û ramanên sazî û dezgehên jinan ên derbarê laşfiroşiyê de bi xwîneran re parve dike. Di encama hevdîtinên me yên bi saziyên jinan re, rastiyek derkete holê: Heta îro ti sazî, dezgeh û kesan li ser vê sektora laşfiroşiyê ku bi hezaran jin û mêrên Kurd tê de ne, ti lêkolîn nekirine. Ji ber vê yekê agahiyên di destê sazî û dezgehên jinan de pir lokal in. Ev agahî jî zêdetir ji jinên ku di nava sektora laşfiroşiyê de ne û xwestine ji vê sektorê rizgar bibin, hatine wergirtin.

### "Dewletê ev sîstem ava kir"

Li gor agahiyên ku Rûdawê ji kesekî pispor ê bi vê mijarê re eleqedar dibe wergirt, di demên dawî yên Rewşa Awarte de, dewletê çerxa laşfiroşiyê li Amedê û bi taybetî jî li bajarên li nêzî sînoran ava kiriye û piştî avakirina vê çerxê, dewletê destê xwe ji vê çerxê kişandiye. Kesê ku ji ber ewlehiya jiyanê nexwest navê xwe bide, têkiliya dewletê ya bi vê sektorê bi van gotinan şîrove kir: "Hosteyekî dîwaran bifikirin ku tê dîwarê xwe lêdike û diçe. Dewletê jî vê çerxê ava kir û destê xwe jê kişand. Êdî ev pergal weke saetê tiqir tiqir dixebite. Yek milîmek jî şaş nabe. Niha dewlet bixwaze vê sîstemê ji holê rake jî zû bi zû nikare rake, ji ber ku hem kesên di nava dewletê de û hem gelek kesên li bajêr, ranteke mezin ji vê çerxê bi dest dixin. Wisa bûye ku ji bo dîzayna vê sîstemê, bi taybetî ji Edene, Mêrsîn û bajarên din ên Tirkiyeyê jinên profesyonel ên laşfiroş anîne û ew kes vê sektorê bi rê ve dibin. Ew teşe didin vê sektorê, cazîbeya vê sektorê zêde dikin." Kesê ku hinekî serê xwe bi vî karî re êşandiye, destnîşan kir ku niha dewlet ne di nav sektorê de ye, lê naxwaze vê bibîne û pêşî li vê sektora laşfiroşiyê nagire. Kesê pispor wiha axivî: "Her çiqas dewlet di nav vî karî de nebe jî, ji bo qedandina vê sektorê ti gavên berbiçav navêje. Carna mecbûr dimîne, davêje ser hin malan, wan kesan digire binçavan û roja din careke din serbest berdide. Lê gelek polîs jî di nava vî karî de ne, bi bertîlê dixebitin. Hin polîs bi van laşfiroşan re hevkariyê dikin û parek ji vî pereyî ji xwe re digirin."

> "Ger jinên laşfiroş xwedî pîşeyek nebin, nexwende bin û ji ti derê piştgirî nestînin, nikarin ji vê sektorê xilas bibin."


Seroka SELÎS, Rûkan Seydaoglu

### "Me 250 malên laşfiroşiyê tespît kirin"

Seroka Navenda Şêwirmendiya Jinan (SELIS), Rûkan Seydaoglu derbarê mijarê de ji Rûdawê re axivî û li hemberî peyva "karkerên seksê" ku ji aliyê nivîskar û rewşenbîran ve tê bikaranîn nerazîbûn nîşan. Li gor Seydaoglu ev peyv laşfiroşiyê rewa dike. Seydaoglu, sedema bipêşketiya laşfiroşiyê weke "encama şerê 30 salan" şîrove dike. Li gor Seydaoglu, şer bi xwe re koçberiyê, koçberî xizanî û birçîbûnê aniye û ji ber vê yekê jî gelek xizan neçar mane bikevin nava diranên vê çerxê. Seydaoglu, bang li jinên ku dixwazin ji vê sektorê xilas bibin kir û xwest serî li saziya wan SELÎS'ê bidin. Seydaoglu, destnîşan kir ku kesên dev ji laşfiroşiyê berdidin, êdî nikarin li bajarê heyî bimînin û wiha berdewam kir: "Ew jin neçar dimînin biçin bajarekî din. Ger ew jinên di nava vê sektorê de xwedî pîşeyek nebin, nexwendibin û ji ti derê piştgirî nestînin, nikarin ji vê sektorê xilas bibin. Em ji kesên ku serî li me didin re pêşî xizmeta şêwirmendiyê didin. Em ji wan dipirsin ka çi dixwazin. Ger ti cihê wan ê mayînê tunebe û xetereya wan a jiyanê hebe, em wan dişînin sitargehên jinan li bajarekî din."

> "Li gor serlêdanên li saziya me, zêdetir mêr jinên xwe difiroşin. Kêm be jî, bav û bira jî keç an jî xwîşkên xwe difiroşin."


Rêvebirek KAMER'ê, Nilufer Yilmaz

Seydaoglu, destnîşan kir ku hejmara malên ku laşfiroşî tê de tê kirin gelek zêde ne û tenê wan li aliyê Baglarê 250 mal tespît kirine. Seydaoglu, li ser laşfiroşiya ku tê gotin li Amedê di 5 hezar malan de tê kirin, nêrîna xwe wiha anî zimên: "Bazara laşfiroşiyê piranî di telefonan de tê kirin. Telefonên kesên li vê herêmê bi baldarî tên guhdarkirin. Lê telefonên kesên ku laşfiroşî dikin nayên guhdarkirin. Dema ku canê wan bixwaze, telefona herkesî guhdar dikin. Divê li Amedê kontrola li ser cafeyên înternetê bê zêdekirin, jiber evder yek ji kemîna laşfiroşiyê ye. Di vî warî de barê mezin dikeve ser rêvebiriyên herêmî."

### "Laşfiroşî bûye deriyê rantê"

Endama Lijneya Rêvebiriya Navenda Jinan (KAMER), Nilufer Yilmaz jî bal kişand ku li Amedê laşfiroşî êdî bûye sektorek û li bajêr gelek kes ji vê sektorê rant bi dest dixin. Yilmaz da zanîn ku kesên di sektora laşfiroşiyê de ne, di heman demê de bi madeyên bêhişiyê (tiryak) re jî mijûl in û wiha berdewam kir: "Li gor serlêdanên li saziya me, zêdetir mêr jinên xwe difiroşin. Kêm be jî bav û bira jî keç an jî xwîşkên xwe difiroşin. Gelek jin bi hinceta ku ji aliyê mêrên xwe ve tên firotin, serî li me didin. Ji me alîkarî dixwazin. Gelek jin ji ber ku bi gotina mêrên xwe nakin, rastê tundiyê tên. Em ewlehiya jiyana van jinên ku serî li me didin bi cih tînin." Yilmaz, da zanîn ku gelek jinên ku serî li wan didin bi gotina "ez dixwazim dev ji laşfiroşiyê berdim lê…" dest bi axaftina xwe dikin û nêrîna xwe wiha vegot: "Kêm jin bi awayeke zelal daxwaza xwe ya xilasiya ji vê sektorê tînin zimên. Li pişt 'lê…' tirs heye. Jiber laşfiroşî sektorek e. Jinên laşfiroş ji kesên di nava vê sektorê de ne ditirsin. Em ji van jinên ku dixwazin rizgar bibin re zêdetir karên weke tezgahtarî û karên rojane dibînin. Em karê lênihêrtina zarokan dibînin, lê ev ji ber travmayê, naxwazin li zarokan binêrin."

Yilmaz, ji bo qedandina laşfiroşiyê, xwest ku qadên kar bên avakirin, derbarê laşfiroşiyê de semîner, panel û civînên zanekirinê bên lidarxistin. Li gor qanûnên Tirkiyeyê kesên ku laşfiroşî dikin na, kesên laşfiroşiyê didin kirin sûcdar in. Ji ber ku kes giliyê kesî nake û hemû kesên di vê sektorê de ji ber hin sedeman neçar dimînin hev biparêzin, gilî bê kirin jî ji ber tunebûna delîlan ceza nayê dayîn.

## Erdogan jî tevlî konferansê dibe!

# KURD-KAV û Tevgera Reformê dest dan hev

Di 15 û 16'ê Çileyê de li Stenbolê bi navê 'Biratiya Kurd û Tirkan-Pirsgirêjk û Çareyên Wê' konferansek berfireh tê lidarxistin. Serokwezîrê Tirkiyê Erdogan û Atalay jî hatine vexwendin.


Serokwezîrê Tirkiyê T. Erdogan


Serokê Kurd - KAV'ê Kasim Ergun


KURD - KAV

**Seyîdxan Kurij**

Weqfa Lêkolînî û Çandî ya Kurdî (Kurd-Kav) û Tevgera Reformê, bi hinceta ku ji bo pirsgirêka Kurd li çareseriyan bigerin, di rojên 15-16'ê vê mehê de li Stenbolê li koşka Malta yê konferansekê bi navê 'Wateya Biratiya Kurd û Tirkan: Pirsgirêk û çareyên wê' li dar dixin. Ev rêxistinên navborî dixwazin di konferansê de bi rojnamevan, sîyasetmedar, nivîskar, çalakvanên rêxistinên sîvîl û akademîsyenan re pirsgirêka Kurd nîqaş bikin.

Serokê KURD-KAV'ê Kasim Ergun derbarê amadekariyên konferansa 'Wateya Biratiya Kurd û Tirkan: Pirsgirêk û çareyên wê' de got ew dixwazin ku raya gîştî a Tirkiyê mixatabên pirsgirêkê guhdar bikin.

Tevgera Reformê ku damezranê wê parlemeneterekî AKP'ê ye, yek ji amadekarê konferansê ye û pêşniyaza konferansê ji wan hatiye. Ergun wiha axivî: "Ev demeke dirêj e em li ser konferansek wiha difikirin. Di dawî de em hatin wê baweriyê ku, wê konferansek wiha encamek baş bide, o me biryara lidarxistinê da."

Ji bo beşdarbûna konferansê navên balkêş derbas dibin. Serokwezîr R.Tayyip Erdogan û Wezîrê Navxwe Beşir Atalay û rayedarên CHP û BDP'ê. Li ser pirsa gelo ew kes û dezgehên navborî wê beşdarê konferansê bibin, an na, Kasim Ergun got, "Belê gava pirsgirêkek balkeş dernekeve wê Erdogan û Atalay beşdarê konferansê bibin. Huseyin Çelik jî bi navê axaftvanê AKP'ê hatiye vexwendin û wê beşdar bibe. Armanca vexwandina wan ew ku, ew siyaseta hikuûmet û AKP'ê a derbarê çareseriya pirsgirêka Kurd de û di çalakiyeke rêxistinên Kurd de bînîn zimen û li ser projeya rêlêvekirina demokratîk tevlî nîqaşan bibin." Ergun ragihand ku navenda CHP û BDP'ê jî soz dane ku beşdarî konferansê bibin.

Kasim Ergun di dawiya axaftina xwe de da zanîn ku ew ê encama konferansê bikin wek pirtûk û belav bikin. Ergun wiha dawî bi axaftina xwe anî: "Li gor baweriya me rêxistinên Kurd ên ku nêzî hev difikirin divê di navbera xwe de yekîtiyê saz bikin û li ser berjewendiyên netewî hevkarî û îtîfaqê bikin."

Em wek KURD-KAV'ê ji bo hevkarî û yekîtiya Kurdan hewl didin li Bakurê Kurdistanê ku civînek netewî li dar bixin. KURD-KAV rexistineke sivîl e û ji bo hemû rêxistinên siyasî yên Kurd heman nêzîkatiyê nîşan dide."

Ji bilî siyasetmedaran wê ev kesayat tevlî konferansê bibin: Ayşe Hur, Murat Ciwan, Oral Çalişlar, Sertaç Bucak, Tarik Ziya Ekinci, Ece Temelkuran, Tarhan Erdem, Halim Îpek, M.Emin Aktar, Vahap Coşkun, Bayram Bozyel, Cengiz Çandar, Şerafettin Elçi, Galip Ensarioglu, Dengîr Mîr Mehmet Firat, Şah İsmail Bedirhanoglu, Gursel Tekin, Casim Soylu û Nuray Mert.



**Bayram Ayaz**

## Li Bakur Şoreşa Ziman

Eger bê pirsîn, li Kurdistanê bûyera herî balkêş û girîng a sala borî kîjan e, ez ê du bûyeran binav bikim: Li başûrê welatê me Kongreya PDK'ê û li bakûrê welat kampanya zimanê kurdî.

Derheqê Kongreya PDK'ê de me bi kurdî û tirkî berfereh nivîsî, nêrînên xwe ji bo xwendevanan ragihand. Di nivîsekî de me got PDK rêber û serkêşê karwanê kurdewariyê ye. Rêber bi ku derê ve bikêşe, karwan bi wî alî ve diherike. Di Kongreyê de PDK'ê biryara mafê çarenûsê (self determination) da. Serokê Kurdistanê di axaftina xwe de got, em ê di bin diktatoriyê de nejîn û biryara xwe bidin. Doh (08.01.2011) di pêşwaziya şandeka ragihandinê ya Kuweytî de, nêrîna xwe hê zelaltir kir û got: "Dema ku dîktatorek desthilatê bi dest bixe, em ê serxwebûna xwe ragihînin û deqeyekê jî ranewestin, em ê tecrûbeya xwe ya bi Saddam û partiya Baasê re dubare nekin."

Serok Barzanî liderekî gelek bi dîqet e, heta nuha kesê ji devê wî gotinên vala nebihîstiye. Ev gotin tên wê wateyê ku eger were û li me biqewime, serkirdayetiya Kurd bi xwe bawer e, dikare serxwebûnê ragihîne. Ev yek di dîroka tevgera siyasî ya Kurdî de, qonaxeke nû ye. Rêber nîşan dike, ber bi ku ve, divê karwan xwe amade bike. Berê me, ber bi xêrê ve ye. Miletê Kurd dewleteka demokrat û xweser divê. Yeka ku em hemî bikarin bêjin 'ev e dewleta min!'

Em ji başûrê welatê me derbasî bakur bibin, werin ser mijara şoreşa zimanî ya ku niha li gund û qeza û bajarên bakurê welat bi coşekî xurt berdewam e. Em qala kampanya zimanê kurdî dikin. Ji bo min ev kampanya bi qasî şoreşekî bi qedr û qîmet e. Bi bîr û hizra min, ev bi xwe şoreşa zimanê kurdî ye li Bakurê Kurdistanê.

Biryara axaftin û bikaranîna zimanê kurdî ya PKK/KCK/KCD/BDP'ê di nav hemû kar û xebatên wan ên siyasî de biryara herî rast û bi bandor e. Piştî vê biryarê bi taybetî Kurdi-Der'ê dest bi kampanya çalakiyên zimanî kir. Xebat û xizmetên hêja tên kirin. Di vê mijarê de yekrêziya tevgera welatparêza Bakurê Kurdistanê jî pêkhat. Binêrin, hemû rêxistinên siyasî, demokrat, civakî, pêşeyî, olî yên hêla Kurdistanê piştgiriya vê biryarê dikin. Li dora vê daxwazê tevgereke sivîl peyda bû. Ev tê wê wateyê ku biryarên rast, karên di demê xwe de ji xelkê Kurd piştgiriyê digre, xelk xwedî li daxwazên xwe yên rewa derdikeve. Ev biryar û çalakî divê ji me gişan re bibe eqil.

Tişta em bêjin: ji bo xatirê xwîna şehîdên Kurd û Kurdistanê, ji bo xatirê ew eziyet û zilma bi deh hezaran welatparêzan kişandiye, ji bo xatirê malwêranî û belengaziya ku me Kurdan kişand û hêjî em dikşînin, vê şoreşa zimanê kurdî biparêzin û xurt bikin. Ev erkekî kurdewar e.

Sala 2011 bila bibe serkevtina şoreşa zimanî û doza Kurdistanê.

# Ciwanên Kurd li Başûrê Afrîka Ereb aciz kirin

Ciwan û xwendekarên Kurd di nava şandên welatên cuda de beşdarî festîvala navnetewî ya ciwanan li Başûrê Afrîka bûn, lê li wir xwe cuda kirin û bi navê Kurdistanê çalakiyên xwe domandin.

**Seral Alîxan**

Roja 13'ê Kanûna 2010'an li stadyûma bajarê Pretoria yê Başûrê Afrîka 17 top hatin avêtin, weke nîşanek ji bo destpêkirina 17. Festîvala Navnetewî ya Ciwanan ku bi dirûşma 'tekoşîna li dijî emperyalizmê, ji bo cîhaneke bi aştî, alîkarî û pêşveçûna civakî' û bi amadebûna bi dehan hezar ciwan û xwendekarên ji bêtiriya welatên dinyayê pêkhat.

Di destpêka festîvalê de Serokê Yekîtiya Navnetewî ya Ciwanên Demokrat (WFDY) û Serokê Başûrê Afrîka, Jacob Zuma axaftinên xwe pêşkêş kirin. Şandên welatên cuda bi alayên welatên xwe hatin nav stadyûmê û yek ji wan şanda Başûrê Kurdistanê bû. Serokê Şanda Xwendekar û Ciwanên Herêma Kurdistanê, Kameran Xerîb Emîn, ji Rûdawê re diyarkir ku di çalakiya roja yekemîn de ew bi cilên kurdî û alayên Kurdistanê derketin holê, "Em di nava şanda Îraqê de bûn, lê dema li ser ekranên mezin wêneyê şandê hat nîşandan kesî alayê Îraqê nedît, ji ber ku tenê yek ala hebû û yên Kurdistanê bi dehan bûn."

Di roja duyemîn de şanda Herêma Kurdistanê xwe ji ya Îraqê cudakir û cihekî taybet bi navê Kurdistanê bidestxist û alaya Kurdistanê lê hilda. Serokê şanda Başûrê Kurdistanê got ku wan ligel bêtiriya şandên beşdarbûyî hevdîtin pêkanîne û hewl dane gelê Kurd û pirsgirêka wî ji ciwanên cîhanê re bidin nasandin. "Şanda me ya bi alayên Kurdistanê, T-shirtên ku alayê Kurdistanê li ser in û belavokên derbarê Kurdistanê weke diyarî dan wan." Xerîb Emîn herwiha da zanîn ku ew ê bi şandên mayî re jî rûnin. "Em ê taybet ligel şandên welatên Ewrûpî hevdîtinan pêk bînin." Wî herwiha got ku ew ê çalakiyên xwe yên çandî jî bidomînin û belavokan jî belav bikin.



34 ciwanên Kurd ên ji beşên cuda yên Kurdistanê beşdar festîvala ciwanan bûn

## Ji Almanya jî şandeke ciwanên Kurd beşdarî festîvalê bû

Di roja duyemîn de şanda Yekîtiya Xwendekarên Kurdistanê (YXK) beşdarî festîvalê bû, ew di nava şanda Alman de çûbûn wê çalakiyê. Xwendekarên YXK'ê jî wek yên Başûrê Kurdistanê li wir xwe cudakirin û odeyeke taybet bi navê Ciwanên Kurd ji xwe re peydakirin, Kameran Xerîb Emîn got "Peywendiya me bi şanda YXK'ê re xurt e û em her roj serdana wan dikin, roja ku ew hatin me û wan bi hevre weke xwendekar û ciwanên Kurdistanê li ber deriyê wan dîlaneke kurdî çêkir û alaya Kurdistanê bilind kir." Xerîb diyar kir ku ciwanên Erebên Sûriyê bi vê çalakiya kulturî ya ciwanên Kurdan aciz bûn, "Ji ber ku dîlan li ber deriyê şanda ciwanên YXK ya li kêleka şanda ciwanên Sûriyê hat sazkirin."

Serokê Şanda YXK'ê, Mesut Atala jî derbarê beşdariya xwe ji bo Rûdawê got, "Em 6 kes in û di nava şanda çepgirên Alman de beşdarî festîvalê bûne. Ev cara duyemîn e; cara yekemîn me li Venezuela beşdarîkir." Atala herwiha diyar kir ku cihê wan ê taybet heye "Em bi navê ciwanên Kurd li vir in, helbet em nûnertiya rêxistinekê jî dikin û me di danûstanên xwe yên ligel şandên ciwanan de behsa rewş û pirsgirêka Kurd kir." Mesud Atala behsa şanda Başûrê Kurdistanê jî kir û got ku kêfa wan gelek pê hatiye "Peywendiya me bi wan re berdewam e."

## Nêzîkî 30 hezar ciwanên ji 180 welatan beşdarî festîvalê bûne

Li gor zanyariyên Endamê Serokatiya Yekîtiya Lawên Demokrat a Kurdistanê, Reşîd Îbrahîm nêzîkî 30 hezar ciwanên ji 180 welatan beşdarî festîvalê bûne. "Şanda Başûrê Kurdistanê 28 kes bûn û em ê daxwazê ji Yekîtiya Navnetewî ya Lawan bikin ku di festîvala dahatî de me weke şanda lawên Kurdistanê dawet bikin, lê ne ligel şanda Îraqê."

Yekîtiya Navnetewî ya Ciwanên Demokrat, li sala 1945'an li London hat damezrandin û buroya wê ya sereke li Budapest a Macarîstanê ye. Bi dehan rêxistinên ciwanên çepgir, pêşketinxwaz û azadîxwaz tê de cîh digrin. Niha Yekîtiya Ciwanên Komonîstên Portugalî serokatiya vê yekîtiyê dike.

# Karsazê Kurd hîn jî winda ye

**Rûdaw -** Li Hollanda bajarê Arnheimê ku li ser sînorê Almanya ye, karsazekî Kurd bi navê Metin Aydin berî du salan ji aliyê grûbeke nenas ve hatibû revandin.

Karsazê Kurd ê ji bakurê Kurdistanê bajarê Dêrsimê ye, ji ber sedemên ku nayên zanîn, hatibû revandin. Polîsên Holendî jî ragihandin ku heta niha ew rastî şopa wî nehatine.




Metin Aydin

## Çawa hatibû revandin?

Roja 13'ê Cotmeh a 2009'an, derdora demjimêr 03.00 şevê, Metin Aydin ê 45 salî, bi otomobîla xwe li Arnheimê di kolana Albert van Dalsumstraat de derbas dibû. Ji nişkê ve 2 otomobîl derketin pêşiya wî û riya wî girtin, xwe weke polîsên sivîl pêşkêşkirin.

Grûba ku riya wî girt ji 7 kesan pêk dihat. 3 kesan ji wan bi zorê Metin Aydin ji otomobîlê daxistin û lêdan. Piştre ew li otomobîleke din siwar kirin û berê wî dane cihekî nediyar.

Nasên Metin Aydin dibêjin ku, ew ji dil û kezeba xwe nexweş bû û her demê derman distand.

Li gor istîxbarata polîsan, karsazê Kurd Metin Aydin, berî revandina xwe bi du rojan, ji aliyê hinek kesan ve dihate şopandin, wî bi xwe ji malbata xwe re behsa vê yekê kiribû, lê cidî negirtibû. Heta niha jî polîs nizanin ka çi bi serê Metin Aydin hatiye û yên ku ew revandine kî ne?

# Kurd li ser gora Rosa Luxemburg bûn



Wêne: Alam Ken (Berlîn)

Di meşa Berlînê de Kurd jî beşdar bûn û Rosa Luxemburg û Karl Liebknecht bi bîr anîn

Yekşema borî bi hezaran kesan li Berlînê rêberên hereketa sosyalîst a Almanyayê Rosa Luxemburg û Karl Liebknecht bi bîr anîn.

Meş ji aliyê partiyên almanî Die Linke (Partiya Çep) û gelek saziyên din hatibû amadekirin û piştî du demjimêran bi dawî hat. Kurd jî tevlî meşa bîranînê bûn û alên xwe rakirin. Rosa Luxemburg û Karl Liebknecht di 15'ê Çileya 1919'an de ji aliyê lêşkerên reaktioner li Berlînê hatibûn kuştin.

Karmend û mêvanên **Kurdistan TV** gilî dikin:

# Programên me nayên weşandin

Hevkarên kevin û nû yên Kurdistan TV, herwiha hin kesayetiyên Kurd giliya wê yekê dikin ku ev televizyona Kurdî programên wan naweşîne, rêvebirekî K.tv jî li Ewrûpa diyar kir ku "Gelek sedemên wê yekê hene."



Di rûniştina studyoya K-TV ya li Almanya de çend kesatî û rewşenbîrên Kurd amadebûn

**Silêmanê Alîxan** Kleve

Roja 7'ê Çileya 2011'an studyoya Kurdistan TV a Ewrûpa ku li bajarê Kleve ya rojavayê Almanya li ser sînorê Holanda ye, bi boneya 12. salvegera damezrandina K-TV ji bo çendîn kesayet, sazî, rojnamevan û rewşenbîrên Kurdên li Almanya û derdorê wê mêvandariyek sazkir. K-TV di 17'î Çileya 1999'an de dest bi weşana xwe kiribû û bû yekemîn televizyona Kurdî ku weşana xwe ji axa Kurdistanê dike. Di vê rûniştinê de ku hevkarekî Rûdaw jî amadebû, mêvanan rexne û pêşniyarên xwe pêşkêş kirin û berpirsên K-TV jî derbarê rexne û ramanan de mêvanan ronî kirin û bersivdan pirsên wan; lê tiştê balkêş ew bû ku herî zêde karmendên K-TV rexne li xwe digirtin û bêtir behsa wê yekê dikirin ku programên ew amade dikin, nayên weşandin.

### Take jina ku di rûniştinê de axiftin kir, giliya wê yekê jî kir ku di navbera Kurdistan û Ewrûpayê de hemahengî tune

Amadekar û pêşkêşkara programa Kurdistan TV ya bi navê Paidia, Şine Pêncwînî, di rûniştinê de gelek gilî kirin, wê ji bo Rûdawê jî giliya wê yekê kir ku kêm jin hatibûn dawetkirin. "Derfet jî nedidan ku em weke jin nerîna xwe bi azadî bibêjin." Şine Pêncwînî eşkere jî kir ku "Di nav saziyeke rewşenbîrî de li Ewrûpayê nebûna bingeha azadiyê ji bo min pirsgirêkeke mezin e."

### Amadekar û pêşkêşkarê programeke berê yê K-TV dibêje di K-TV de grûp hene, loma pêşnakeve û ew jî naxwaze bi wê televizyonê re bixebite

Pêncwînî behsa programa xwe jî kir û got, "Min 6 xeleke amadekirine, lê 5 dîtine, hevkarên me yên Kurdistanê jî dibêjin me hemû weşandine, vêca nizanim rast e yan na." Ew karmenda K-TV ku li welatê Holanda dijî dibêje ew bi çêkirina programan ve diwestin, lê li Kurdistanê hurmeta wê westiyana wan nayê girtin, "Pirsgirêka me dinavbera Kurdistan û Ewrûpa de nebûna hemanegiyê ye." Pêşkêşkara programa Paidia herwiha diyar kir ku K-TV tiştê baş jî kiriye, "Lê ji ber ku ev sazî girêdayî partiyekê ye, mirov nikare dahênanê bike û pêşketinê pêkbîne, ji ber ku ne bi yek baweriyê, lê bi bîrûbaweriyên cuda pêşkeftin çê dibe."

Hunermendê stranbêj, Elind ku amadekar û pêşkêşkarê programeke hunerî bû li **K-TV** ji bo Rûdawê got, "Piştî ku Kurdistan.tv bû televizyoneke nûçeyî êdî programa min a hunerî ya bi navê (Evîna Huner) rawestiya û min bi navê Dûrjîn du program çêkirin û du mamosteyên navdarên wêje û hunerê vexwendin, lê program nehat weşandin û ez niha şermê ji wan mamosteyan dikim, ew ji min dipirsin ka boçî program nehat weşandin, ez jî nizanim mesele çi ye!?"

Elind di wê baweriyê de ye ku di Kurdistan TV de grûp hene. "Her kes grûpa xwe diparêze." Ew di wê baweriyê de ye ku ji bilî programa wî herwiha gelek programên din jî nayên weşandin. "Bila rexneyê bikin û kêmasiyên me destnîşan bikin, lê nabe ew xwe bêdeng bikin û programan neweşînin." Elind rexneyên tund jî kirin û got, "K-TV ji ber vê yekê qet pêşneketiye." li dawiyê jî got ew tenê ji bo xatirê rêvebirên studioya Ewrûpa hatiye, ne xwe naxwaze bi K-TV re bixebite.

### Nivîskarekî Kurd bi mendehoşî berê xwe dide kar û xebatên kanalên medya Kurdî û taybet behsa K-TV jî kir û got "Medya PDK'ê berevajî hemû dinyayê ye"

Nivîskarê Kurd, Qeys Qeredaxî jî di semînara studioya K-TV amadebû û axaftina semînarê destpêkir, wî ji bo Rûdawê got ku di dinyayê de dema ji aliyê serokatiyê tiştên nebaş bên kirin, medya wan nebaşiyan boyax dike, "Lê di nava medya PDK'ê de berevajî hemû dinyayê tê kirin, ango li jor karên baş tên kirin, lê medya wê vedişêre, ev jî tiştekî ne normal e."

Qeredaxî berdewam ji bo kanalên erebî diaxive û bêtir bi zimanê erebî gutarên xwe dinivsîne, ew di nav Ereban de weke parêzvanekî serhişkê doza Kurd û Kurdistanê tê naskirin û dibêje: "Bêtirî hezar û sed hevdîtinên min ligel kenalên dinyayê hene û hemû hatine weşandin." Qeredaxî radigihîne ku ji bo beşdarbûna di programeke siyasî de ew carekê ji aliyê K-TV hat vexwendin: "Ez 700 kilometreyan ji dûr hatim studyoyê û beşdarî programê bûm, piştre heman dûriyê vegeriyam, lê program nehat weşandin, tevî ku min di programê de xelk dehif dikirin ku dengê xwe bidin Serok Barzanî."

Qeys Qeredaxî rexne li karbidestên K-TV yên li Kurdistanê girt û diyar kir ku di helkeftên mezin de K-TV hevpeyvînê ligel rêvebirê xwe dike û got berî çendekê Serokê Kurdistanê behsa serxwebûnê kir û hemû dinyayê jî behs kir, "Lê televizyonên kurdî xwe bêdeng kirin û nehêştin em jî weke nivîskar dengê xwe derxînin û di van deman de stran weşandin, behsa çîrokên kevin, jiyana Hîtler û rêzefîlmên biyanê diweşandin."

"Di nav saziyeke rewşenbîrî de li Ewrûpayê nebûna bingeha azadiyê ji bo min pirsgirêkeke mezin e."



Pêskeşkar Şine Pênciwînî

"Ez 700 kîlometreyan ji dûr hatim ji bo programê û min xelk dehif kir ku deng bidin Serok Barzanî, lê program nehat weşandin."



Nivîskar Qeys Qeredaxî

"Bila rexneyê bikin û kêmasiyên me destnîşan bikin, lê nabe ew xwe bêdeng bikin û programan neweşînin."



Hunermend Elid

Gulistan Perwer û Şivan Perwer du navên naskirî û bi hev ve girêdayî ne. Her Kurdek, dema navê van herdu hunermendan tê holê, di cih de xeyala wî diçe hunera şoreşgêrî. Gulistan Perwer li mala xwe ya li Dihokê bersiva pirsiyarên Rûdawê da û got ku wê biryar daye ligel Şivan û kurê xwe Serxwebûn rojên dawî yên temenê xwe li Dihokê derbas bikin.



# Gulistan Perwer: Bi rêya Serok Barzanî pirsgirêk di navbera min û Şivan de nema û nabe

**Rûdaw: Te çima stran gotin?**
**Gulistan Perwer:** Ev 35 sal in stranan dibêjim. Ev ne karekî plandar bû. Ji ber rewşa kultûrî û civakî ya Kurdan wek jinekê min dest bi gotina stranan kir. Wê demê li seranserê Kurdistanê, ji ber meseleya olî û êlperestî, strangotin wek tiştekî sivik dihat dîtin. Malbatên ku ji xwe razî bûn, nedihiştin law û keçên wan tevî muzîk û stranan bibin. Strangotin ji bo min pir dûr bû, ji ber ew bajarê ku lê dijiyam stran tenê li koşk, dîwanxane û şahiyan de dihatin gotin. Pişt re çûm Almanya û min bi strana şoreşgêrî destpê kir.

**Tu li çend welatan jiyayî?**
Ez li gundekî ser bi devera Riha jidayik bûm. Dayika min xelkê Amedê ye û bavê min jî xelkê gundê Qereç ê ser bi Amedê ye. Heta temenê min bû 16 sal li bajarokê Wêranşarê jiyam. Dûre çûm Almanya. Di 4 salên jiyan û maldariyê ligel Şivan Perwer li wir, kurek ji me re çêbû. Piştre min xwest li Swêdê xwendina xwe bidawî bînim, çûm zanîngehê lê min xilas nekir.

## "Bi lêdanê fêrî zimanê Tirkî bûm"

**Zimanê Kurdî qedexe bû, tu çawa bi kurdî dipeyivî?**
Di malbata me de hemû bi kurdî daxivîn, loma hê di zaroktiyê de fêrî kurdî bûm. Dema di 6 saliyê de çûm xwendingehê min nizanibû zimanê tirkî çî ye, gava mamoste bi dengekî bilind `gel gel` (were were) gazî min kir, min nizanibû çi dibêje, bi giriyan vegeriyam malê. Heta fêrî tirkî bûm, mamosteyên min zêde li min dan.

**Gelo te stran bi xwesteka xwe, an ji ber hesta şoreşgêrî gotin?**
Ji xwestekeke şoreşgêrî zêdetir, wek berpirsiyariyekê min dest bi gotina stranan kir. Dema bûm hevsera Şivan Perwer, wî wiha ji min re got: Gulistan min jiyana xwe ji bo şoreşê terxan kiriye û bûme şoreşger, jin di warê hunerî de nînin ku stranên şoreşgêrî bêjin, divê tu vê yekê bikî. Destpêkê ji ber eşîret û olê cesareta min nebû stranan bêjim, lê Şivan ev kar ji min re hêsan kir, lewra niha jî dibêjim Şivan nebûna, Gulistan jî wek huner nedibû.

**Ev demeke tu albûmekê amade dikî, çi lêhat?**
Amade ye, lê kesê ciddî nîne û kes wek sponser daxwaz nekiriye piştîvaniya min bike. Ev 33 sal in di vî warî de kar dikim û niha tişt guherîne, êdî karên profesyonel derdikevin. Li sponsorekî digerim ku bi dirustî kar û navê Gulistan hilbigre.

**Te daxwaza sponseriyê li ti şirketê kiriye?**
Ez şerm dikim daxwaz ji şirketekê bikim ku bibe sponserê min, lê amade me ligel şirketên ku li Kurdistanê kar dikin di vî warî de baxixim.

**Stranên şoreşgêrî di albûma te ya nû de hene?**
Hemû corek tê de heye, wek stranên şoreşgêrî, gelêrî û nûjen. Straneke bi zaravê soranî jî tê de heye.

## "Kanalên Başûr bêserûber in"

**Zaravê soranî ji bo te ne zehmet e?**
Gotina stranan bi soranî ji min re zehmet e, ji ber nikarim bi soranî biaxivim, her çiqasî ji sedî 99'ê wê fam dikim jî.

**Wê dema ku ti jinekê stran nedigotin, tu pir diyar bûyî, niha ne diyarî, ji ber çi?**
Sedemê wê di pileya yekem de kanalên kurdî ne, rexneyên min ên zêde li kanalên Başûrê Kurdistanê hene, pir bêserûber in. Dema behsa hunermendên wek me tê kirin, dibêjin wan di serdemê şoreşê de bi rola xwe rabûn û niha erkê wan xilas bû. Kêfa van kanalan ji jinên azad re tê, yên azad li gor pîvanên wan ji bo azadiya jinan. Ez vê wek azadî nabînim, lê rêveber û xwediyên şirketan vêya wek azadî dibînin. Mixabin ew dixwazin bi vî awayî Kurdistanê nûjen bikin.

## "Klîpa Mijdên şermezariyeke mezin e"

**Berî demekê Mijden klîpeke nîvtazî belav kir, raya te li ser vê klîpê çî ye?**
Klîpa Mijden wek şermezariyeke mezin dibînim, ji ber ne hunera xwe lê laşê xwe pêşanî xelkê daye. Hinek hunermendên jin ku kar û dengê wan baş e jî hene, wek Şehrîbana Kurdî û Çopî Fetah.

**Niha guhdariya stranên şoreşgêrî yên xwe û Şivan dikî?**
Belê, her gava guhdariya van stranan dikim, hestiyar dibim û rojên borî tên bîra min.

**Bêtir li stranên xwe, yan yên Şivan Perwer guhdar dikî?**
Yên Şivan û Şivan jî li yên min guhdar dike.

**Ti gazinên te ji Hikûmeta Herêma Kurdistanê hene?**
Na, pir razî me û ne poşman im ji wan zehmetiyên ku min kêşan, ji ber niha Kurdistana azad dibînim û em jî di nav de ne.

## "Xaniyê Dihokê têra me dike û zêde ye"

**Xaniyê li Dihokê yê te ye, yan yê Şivan e?**
Yê me hemuyan e, ez û Şivan û kurê me. Niha dayika min bi mêvanî li cem me ye û hêvî dikim neviyên xwe di vî xanî de bibînim.

**We çima Dihok hilbijart?**
Li Dihokê axaftin bi zaravê me ye û ji aliyê ruhî bêtir ji hev nêzîk in, ti cudahiyê naxim navbera Amed û Dihokê.

**Niyeta te heye heya dawiyê li Dihokê jiyan bikî?**
Belê, me biryar daye ew jiyana me ya mayî em li Dihokê bimînin. Xewna min bû ez li Kurdistana azad jiyan bikim. Di dema Saddam Hûseyîn de ev yek ji min re xeyal bû, min bawer nedikir vê azadiyê bibînim û digot dibe ku neviyên li pey me bibînin.

**Mesûd Barzanî di lihevanîna te û Şivan de çi rolek leyîst?**
Rola serok Barzanî mezin bû. Hemû tişt wek wî dixwest pêk hatin. Niha ez û Şivan bi hev re dijîn û ti tiştê din di navbera me de naqewime.

**Hinek kes wisa difikirin ku dema strana şoreşgerî nemaye, nêrîna te çî ye?**
Ev ne rast e û hê jî dema wê maye. Dema li Başûrê Kurdistanê şer hebû, 30 milyon Kurdên Bakûr li gel nexweşiya Kurdên Başûr de bûn. Rast e, 5 milyon Kurd azad bûne, lê hê sê parçeyên Kurdistanê û li Başûrê Kurdistanê jî Kerkûk û hinek herêmên din azad nebûne. Divê hunermendên kurd ji bo her çar parçeyên Kurdistanê stranan bêjin.

## "Tirk di tewandina gelan de zîrek in"

**Hûn di wê baweriyê de ne ku strana kurdî orjînala xwe ji dest daye?**
Mixabin hinek kes ji bo vê yekê kar dikin. Lê bi nêrîna min strana kurdî lewaz nebûye, ji ber ku wekî kaniya avê ne ji bin hatiye. Dîroka strana Kurdî 5 hezar sal e. Ew stranên niha bi navê nûjen peyda dibin, li Başûr bûne model, tiştek demî ye û namîne. Tirsa min ji wê yekê nine ku mûzîk û strana Kurdî lawaz bibe, belkî tirsa min ji wê yekê heye ku strana Kurdî ya resen wisan li bê û ji bo neviyên me bibe tiştek nû. Dema yên wekî me ji wan re stranan dibêjin, ji wan re wek tiştekî nû ye.

dewam di rûpel ▶9

Komela Lawan ya Goteborgê di festîvalan de Kurdan temsîl dike

# “Divê em şowa herî baş pêşkeş bikin”

Sana Xiwace bû şahjina festîvalê

**Komela Ciwanên Kurd a li Goteborg di festîvala gelan li Swêdê de pileya yekem û naznavê şahjin bidest xistin. Ew dixwazin bi rêya govendê, gelê Kurd bi tevahiya cîhanê bidin nasandin.**

**Barzan Mihemed** Hewlêr

Pênc rojên festîvala gelan li Germiyan ew zêde westandibûn, lê da ku koma wî şoweke bedew a Kurdî pêşkêş bike, guh nedida westanê. Rênas Amanc di odeya xweamadekirinê de ji bo pêşkêşkirina şowan li Hewlêrê bi awayekî berdewam şîret li grûpa xwe dikir, da ku bi awayê herî baş amade bin: "Ji ber welatê min vê festîvalê birêve dibe, lewra dixwazin şowa herî baş pêşkêş bikin."

Komela Lawan li Goteborg yek bû ji grûpên Kurdî yên ku beriya çend hefteya tevlî festîvala gelan li bajarê Kelar û Hewlêrê bû. Ev grûp ku grûpeke Kurdî ya naskirî ye li Swêdê, ji aliyê Rênas Amanc (18) tê birêvebirin.

Rênas ku li bajarê Silêmaniyê jidayik bûye, hê ji zaroktiyê hez ji govenda Kurdî dike û herdem xewn didît ku bibe rêvebirê grûbeke dîlanê. Rênas di 9 saliya xwe de, bi alîkariya kes û karên xwe tevlî çendîn kursên govendê dibe.




Wêne: Rûdaw

Komela Lawan li Goteborg par li Swêdê hatiye damezrandin û ji nav 25 grûpan pileya yekemîn bidestxist

## Temenê grûpê 2 salî ye, lê tevlî çendîn festîvalan bûye

Grûp di 22’ê Sibata 2009’an de hatiye damezrandin. Her çiqasî temenê vê grûpê nêzîka 2 sala ye, lê beşdarî di çendîn festîvalên navnetewî yên taybet bi çanda gelan de kiriye û gelek xelat bidest xistine. Rênas dibeje: "Di 35’emîn festîvala gelên cîhanê de, ku Adara borî li Swêdê hat sazkirin, di nav 25 grûpan de me pileya yekem anî. Sana Xiwace ya hevkara me jî wek şahjina festîvalê hat hilbijartin."

Rênas di sala 1999’an de ku wê demê temenê wî 7 sal bûn, ligel binemala xwe diçe Swêdê. Ji ber paşguhxistina ku huner û govenda Kurdî rastî dihat, bi hevkariya malbata xwe û hejmareke keç û xortên Kurd di 22’ê Sibata 2009’an de Komela Lawan li Goteborgê ava dike û di heman salê de moletê ji hikûmeta swêdî werdigre: "Mebesta min ji damezrandina komelê nasandina çanda kurdî bi gelên cîhanê û dirustkirina malekê ji bo ciwanên Kurd li Swêdê ye."

## 150 endamên keç û xortên Komela Lawan li Goteborg hene

Koma ciwanan di gelek helkeftên taybet bi gelên cîhanê de beşdarî dikin, çalakiya wan a herî dawî jî beşdariya wan di festîvala kulturî ya gelan de bû, ku di 2’î Mijdara 2010’an de bi serperştiya Rêveberiya Rewşenbîrî ya Silêmaniyê li keleha Şêrwane ya bajarokê Kelar hatibû lidarxistin.

Ev festîvala ku çanda 14 welatan tê de hat nîşandan, roja 7’î Mijdara 2010’an bi şoweke çendîn çalakiyên hunerî li Hewlêrê bidawî hat. Grûpa Rênas bi 40 keç û xortan beşdarî vê festîvalê bû. Ji bilî karê hunerî û serperiştiya Komela Lawên Goteborg, Rênas xwendekarê sinifa 6’ê amadeyî ye, bi gotina xwe karkirin di komeke hunerî û grûpeke govendê de ti astengiyan li ber xwendinê çê nake: "Ji ber min bername ji bo xwendin û karên xwe yên hunerî daniye."

Grûpa govendê ya Goteborg di Îlona sala borî li Oslo ya paytexta Norwêjê ji bo yekem festîvala kultûr û rewşenbîriya kurdî hat vexwendin. Rênas wiha axivî: "Bi govenda kurdî, me beşdarî di festîvalê de kir." Berpirsê Komela Lawan li Goteborg anî ziman ku grûpa wan hewl dide ciwanên Kurd "ji karên xerab ên civaka Ewrûpî dûr bixin û wan nêzîkî kultur û hunera kurdî bikin." Rênas got ku ew dixwazin bi şowa cil û berg û dîlana kurdî, gelê Kurd bi hemû cîhanê bidin nasîn.

---

**Di van çend salên dawî de rêzefilm û mûzîka tirkî li Başûrê Kurdistanê zal bûn, ev li ser ciwanan ne tirsnak e?**

Tirk gelek zîrek in û dizanin çawa gelan bitewênin. Pêwîst nake wekî Saddam kîmyabaran bike û wan ji xwe re bikin bela. Ew bi çand û ziman Kurdan dikûjin. Li Bakûrê Kurdistanê 30 milyon Kurd bi zimanê tirkî kuştine û bi rêzefilmên xwe winda kirine. Niha hêdî-hêdî tên başûrê Kurdistanê. Ji ber ku li Başûr xelk ji rêzefilmên tirkî hez dikin, yên bi tirkî jî nizanin, niha xwe fêrî dikin.

## “Ez dixwazim karê derhêneriya rêzefilman bikim”

**Bernameyek te li MED TV û ROJ TV hebû, gelek kesan temaşe dikir. Niyeta te nîne tu di televizyoneka li Başûr de wî karî bikî?**

Her çar parçeyên Kurdistanê temaşeyî wê bernameyê dikirin. Heta carekê ciwanekî li Qamişlo peywendî li gel min kir û got ’di dema bernameya te de eger diz bikevin nava dikan û malên me, ji ber bernameya te agahdariya xelkê ji ti tiştê çenabe.’ Wê demê karkirin bê beramber bû, lê yên niha bê beramber kar nakin. Ez niha dixwazim bi awayek din rol bigirim û dixwazim karê derhêneriya rêzefilman bikim. Bi rastî dema ez temaşeyî kanalên Kurdî dikim, gelek tilteng dibim. Ti tişt di nav de nîne, yan filmekî biyanî yan jî rêzefilmek dûblajkirî li ser e. Ez gelek dixwazim rêzefilmekê li ser çanda gelê Dihokê bikşînim û nîşanî hemû Kurdan bikim.

**“Tirsa min ji wê yekê nine ku mûzîk û strana Kurdî lawaz bibe, belkî tirsa min ji wê yekê heye ku strana Kurdî ya resen wisan lê bê û ji bo neviyên me bibe tiştek nû.”**

**Li Kurdistanê dilê te bi çi xweş e?**

Bi wê yeka ku ez dibînim hemû kes bi kurdî diaxivin, dar, ber, rê, restorant, polîs û al hemû bi kurdî ne. Ev ji bo min gelek xweş e, ji ber ez ji temenê 16 salî ve ji welatê xwe dûr ketime. Li Ewrûpa di nava malê de me her bi kurdî diaxivî, dema em diçûn derve hemû biyanî bû.

**Baş e, çi tiştê Kurdistanê bi te nexweş e?**

Dema ez li ser rêyekê derbaz dibim, zibil û pîsîtiyê dibînim yan jî ava rawestiyayî li kolanan dibînim, gelek dixeyidim. Ji ber ez gelek ji paqijiyê hez dikim.

**Tu dixwazî li Kurdistanê konserekê li dar bixî?**

Belê, lê bi awayek nû û rêkûpêk. Bi orkestra û dekorekî baş, ji bo mirov bikare rêz li amadevanan bigire. Min li Dihokê tiştek wisa nedîtiye, hinek caran li Hewlêr tê kirin. Lê ne ji bo hunermendên Kurd, ji bo Farisan. Diyar e giyayê hewşê tal e.

## “TRT-6 wekî kanala Kurdî ya Saddam e”

**Tu vekirina TRT-6 çawa dibînî?**

Dewleta Tirk qebûl kir ku li Tirkiyê gelekî din heye. Ji ber ku berê digot, Kurd Tirkên çiyayî ne. Lê ew kanal xizmeta Dewleta Tirk dike, xizmeta çand û hunera kurdî nake. Her wekî wê kanala ku di dema Saddam de hat vekirin.

**Hevaltiya te li gel Merziye Rezazî xweş bû, tu bîra wê dikî?**

Dîtinên me gelek nêzî hev bûn û em wek dost nêzî hev bûn. Mixabin wê jina pêşmerge û şoreşger zû ji nava me bar kir.

**Keça Merziye, Dilniya dikare cihê wê bigre?**

Nexêr, wê tenê berhema dayika xwe qedand. Niha stranan nabêje. Zarokên me hunermendan nexweşiyên zêde dîtine, me nekarî wekî dayik timî wan pal bidîn. Çenteyê me li milê me bû û em her roj û şevekê li cihekê bûn. Ji ber wan nexweşiyan zarokên me têkelî hunerê nabin.

**Têkiliyên te li gel hunermendên Kurdistanê çawa ne?**

Dema bernameya min hebû, hemû dihatin gel me. Lê wekî hevaltiyê li Ewrûpa têkiliyên min li gel Pesar Fayey, Delîl Dîlanar û Diyar Dêrsim xweş bûn. Li vê derê jî Bilind Îbrahîm hatiye mala me, ew ji bo ciwanan xwediyê mûzîkek baş e. Ez amade me alîkariya hemû hunermendan bikim.

**Hinek jinên hunermend baweriya wan bi şû kirinê nîne, hinek jî şû dikin û zû tên telaq dan. Şûkirin û jin anîn bandor li ser hunerê dike?**

Nexêr, huner jî wekî her karekî din e. Yên naxwazin şû bikin yan jî jin bînin, dixwazin azad bin û berpirsyariyê nexin ser milê xwe.

***Hevpeyvîn: Ebdulla Nihêlî***

# Giya dermanê hemû derdan e!

Bi hatina sermayê li Amedê xelk berê xwe dide etaran û ji bo nexweşiyan nebatên wek zencefîl, nane, ixlamûr, beybûn û giyagewrik dikirin.

Bawer Çem Amed

Di demên dawî de li Amedê bi dehan dikanên etaran ku ji bo dermankirina nexweşiyan nebatan difiroşin, hatine vekirin. Li gor etaran ew ji dermanxaneyan zêdetir dixebitin û nexweşên ku ji wan nebat dikirin zûtir sax dibin.

Bi hatina demsala zivistanê, nexweşiyên persîv, asrim, astim û bronşîtê zêdetir bûn. Li gor etar (aktar) Mahmut Gundogan ku ji bo dermankirina van nexweşiyan nebatan difiroşe, xelk êdî di şûna dermanxaneyan de berê xwe didin etaran. Gundogan diyar kir ku bi hatina sermayê re, nebat zêdetir têne firotin û wiha got: "Di mehên zivistanê de li hemberî nexweşiyan nebatên weke zencefîl, îxlamûr, nane, giyagewrik û beybûn pir baş in. Ev nebat nexweşiyên weke persîv, asrim û cemidînê pir zû baş dikin." Gundogan destnîşan kir ku bijîşk jî nebatên bi şîfa ji nexweşan re pêşniyar dikin û da zanîn ku nebat û giyayên bi şîfa, jehra nexweşiyan dikujin.

Etarekî din ku di dikana xwe de nebatên bi şîfa difiroşe, Azad Cihanligul e, wî jî got ku ew bi salan e vî karî dike û nebatên ku ji nexweşiyan re baş tê, yek bi yek ji rojnameya me Rûdawê re rêz kirin. Cihanligul, wiha got: "Giyagewrik bedena mirov bi hêz dike, rîska qeyrana dil kêmtir dike, bêtaqetiyê ji holê radike. Beybûn jî kela laşê mirov datîne û mîkroban dikuje, herwiha wisa dike ku dilê mirov pir diçe xwarinê. Yek ji taybetiyeke beybûnê ew e ku hêrsa mirov datîne, pêşî li sitres û agresîfiyê digre, herwiha ji êşa piştê û êşa diranan re jî baş e."

### Kîjan nebat ji kîjan nexweşiyê re baş e?

**Zencefîl:** Nahêle ku dilê mirov bigere, êşa mîgrenê datîne, herwiha kolestrola mirov datîne.

**Îxlamûr:** Ji bo cemidîn û arsimê baş e, dihêle ku xwîna di laşê mirov de bi awayeke bi rêk û pêk bigere, herwiha ji bo bêxewiyê jî baş e. Ixlamûr, gurçik û roviyê mirov paqij dike û bêxwîniyê ji holê radike. Ixlamûr wisa dike ku mirov zû xwê bide û bi saya vê xwêdanê madeyên xerab ên di laş de bi riya xwêdanê bavêje derve, herwiha ji bo belxemê jî gelek baş e.

**Nane:** Ji bo verişînê baş e û nahêle ku dilê mirov bigere, ji bo asrim, bronşît û cemidînê baş e û kuxika mirov dibire, ji bo stres û serêşê jî gelek baş e û kela di laşê mirov de datîne. Herwiha nane ji bo derxistina derve ya kurmên di roviyan de jî gelek bi kêr tê.

**Bih:** Virikê û dîzanteriyê ji holê radike, mîde û roviyên mirov bi hêz dike, herwiha kêm û edaba di roviyan de ziwa dike û xwînê paqij dike.

**Şîlan:** Ji ber vîtamîna dewlemend a di hundirê wê de, ji çavan re gelek baş e, herwiha laş û bedena mirov pir bi hêz dike. 100 gram şîlan, bi qasî sandoqeke porteqalan e. Şîlan ku vîtamîna C dihundirîne, xwîna mirov paqij dike û kurmên di nava mirov de derdixe derve, herwiha roviyan nerm dike. Şîlan di tedawiya nexweşiya basûr de jî tê bikaranîn.

# Nîsk mirov germ dike

**Rûdaw -** Doktorekî Misrî eşkere kir ku xwarina nîskê pirsgirêka kêmkirina germa laş nahêle û herwiha nahêle mirov zû pîr jî bibe.

Pizîşk û şêwirdarê nexweşiyên zarokan ê Misrî, Mecdî Bedran ragihand ku xwarina nîskê pirsgirêka kêmkirina germa laş nahêle, herwiha nîsk xwarineke başe û zû di laşê mirov de dişewite, bi protînê têr e û enerjiyeke baş dide laş û bi karê organîzekirina hormonan radibe yên razan û tevgerê û xwesteka xwarinê zêde dike, herwiha da zanîn ku nîsk nahêle mirov zû kal bibe.

Li gor hejmareke zêde ya lêkolînan, hatiye zanîn ku nîsk roleke girîng di bihêzkirina endamên demaran de dilîze û herwiha di bihêzkirina hestî û xwînê de, ji ber ku rêjeyeke baş a proteînê di nîskê de heye ku ji bo dirustkirina laş pêwîst e.

## Nexweşiya jibîrkirinê (Alzheimer)

Dr.Nader Tohîdî Sardaşt*

Bi latînî ji nexweşiya jibîrkirinê re 'Mobus Alzheimer' tê gotin. Ev nexweşî di sala 1901'an de ji aliyê profesorê Alman Alois Alzheimer hat destnîşankirin. Cara yekem nexweşiya Alzheimer bi jineke 50 salî ya bi navê Auguste Deter hat dîtin. Ev nexweşî piranî li welatê rojava tê xuyakirin. Ji şêweya herî pir tê xuyakirin jî Demenz tê gotin. Nîşanek ji vê nexweşiyê ya herî zû baldikşîne windakirina hafiza mirovan e, bi windakirina hafizê re hêdî hêdî jibîrkirin xuya dike.

**Sedema alzheimerê çî ye?**

**Dr. Nader Tohîdî Sardaşt:** Li ser nexweşiya alzheimer heta niha bi awayekî vekirî sedem nehatine tespîtkirin. Lê guman li ser faktorên genetîkî heye. Gelek caran bûyerên malbatî tên destnîşankirin. Herwiha 2 genê cuda yê domînant û mutasyon hat tespît kirin. Niha gelek eşkere ye ku ApoE bi gena hişyariyê ve jî têkildar e û ApoE şêveyek kolesterîn –Trasnport e û protein dide çêkirin.

Piraniya nexweşên Alzheimer pîr û kal in, lê nayê wê wateyê ku mirovên ciwan jî bi vê nexweşiyê nakevin. Li gor lêkolina û kesê alzheimer bi wan re hatiyê xuyakirin ez dikarim wisa rêz bikim: Kesên temenê 65 salî ji sedî 2 , yê 70 salî sedî 3, yê 75 sedî 6, yê 85 ji sedî 20 tê xuyakirin. Heta niha bi kesekî 27 salî re jî derket û di 33 saliya xwe de jiyana xwe ji dest da.

**Bandora vê nexweşiyê di jiyana rojane de xwe çawa nîşan dide?**

- Nexweşên alzheimerê di jiyanê de pir xemgîn in.
- Di jiyana rojane de nexweş bi tevahî nikare xwe îfade bike.
- Li cem hinek nexweşan pirsgirêka axaftinê derdikeve.
- Hinek nexweş mirovan jibîrdikin û nizanin ku ew li kû ne.
- Hinek nexweş ne di wê ferqê de ne ku destava xwe bi xwe ve berdidin.
- Herwiha girêdana alzheimerê bi van nexweşiyan re jî heye:

*Nexweşiya guatr*
*Kêmbûna vîtamîna B 12, B6*
*Tumora mejî*
*Infeksiyonên kronîk*
*Depresyona giran*

**Çareseriya alzheimer çî ye?**

Ya rast mirov nikare ji nexweşiya alzheimerê re bi giştî çareseriyekî bibîne. Tenê bi rêya dermanan mirov dikare hinek bandora wê kêm bike û rê li ber pêşxistina wê bigre. Bi giranî ev derman ji bo vê nexweşiyê tên bikaranîn.

- *Donazepil (Aricept) Tbl.5-10 mg rojane 1 Tbl.*
- *Rivastigmin (Exelon) Tbl. 1,5, 3, 4,5, 6 mg rojane 1 Tbl.*
- *Galantamin (Reminyl) Kps 8, 16.24 mg rojane 1. Kps*
- *Tebonin (Ginko bi loba) 50, 100 mg Tb, Tropfen, Drg. rojê 1- car*

Terapiya psîko-sosyal: Mijulkirina bi muzîkê re, xwendin, wêne çêkirin, spor, meş, têkiliyên civakî. Ev hemû jî pir girîng in û alikariyê didin nexweş.

**Amadekirin: Zelal Çelîk**

***Dr. Nader Tohîdî Sardaşt** *pijîşkê giştî ye, ji Rojhilatê Kurdistane ye û niha li Almanyayê dijî.*

### Matur: Ji bo demokratîzekirina Tirkiyê du hêz hene:

# Kurd û kevneperest

**Fethullah Gulen li Parêzgeha Pensilvania a Amerîkayê di nav daristanek mezin de dijî ku rûberê wê 60 hektar e. Li avahiyek mezin dijî û di heyamanê wan hemû salan de tenê 3 caran ji avahiyê derketiye û bi piranî dema xwe li mal derbas dike."**



Bejan Matur

*Helbestvan û nivîsakara naskirî ya Kurd Bejan Matur ku di rojnameya ZAMAN a Tirkî de dinivîsîne, dawiya meha borî digel sê rojnamevanên din ên Tirkiyê li ser gazîkirina Fethullah Gulen çû Amerîka û li wir bi Gulen re hevdîtin çêkir. Di hevdîtinê de Matur ji bilî pirsgirêka kevnperestiyê li Tirkiyê û çaksaziya Demokratîk, behsa nêrînên Gulen ên derbarê pirsgirêka Kurd jî dike.*

**Rûdaw: Piştî ragihandina encamên referandûma 12'ê Îlona borî, liv û tevgerek nû destpêkir û careke din pirsgirêka Kurd ket rojevê. Hûn wek nivîskarek ku ligel navendan xwedî têkiliyek hêzdar in, nemaze yek ji wan nivîsakaran bûn ku berê ligel Erdogan civiyan, rewşê çawa dinirxînin?**

**Bejan Matur:** Referandûm ji bo demokratîzekirina Tirkiyê xalek pir girîng bû. Pêvajoya vekirina demokrasiya Tirkiyê di navbera du hêzan de derbas bû: Hêzek ku li dijî refrom û çaksazî û demokrasiyê bûn, hêza din jî dixwast reform û demokrasî bê cîbicîkirin. Ger encama refrandomê "Belê" nebûya, hêzên dijî reformê pêvajoyê rêk dixistin. Heta eger hebû encama pêvajoyê berevajî be. Ji ber ku ew piştevaniyên ji aliyê nasyonalîstên kevinperest ên nav MHP'ê dihatin kirin, pir girîng bûn, ev jî îsbat kir nasyonalîzmên muhafizekar ên MHP'ê jî piştevaniya vekirina demokrasiyê û çareseriya pirsgirêka Kurd dikin.

**Hûn bi xwe nivîskara rojnameyek kevinperest in û mijarên xwe li wir diweşînin, gelo hûn bawer dikin kevneperest ji bo demokrasiya Tirkiyê heta dawî bimeşin, yan wê heta cihekê bimeşin ku bi xwe pêwîstî pê hene?**

Jib o demokratîzekirina Tirkiyê du hêzên dînamîk hene, yek Kurd û yê din jî kevinperest in. Min pir caran gotiye xwezî AKP û BDP hevpeymanê hev bûna! Bawer dikim wê demê hêza guhertina statûyê pir xwedî bandor bû. Lê mixabin hevpeymanî pêk nehat. Li Tirkiyê beşek zêde ji muhafizekaran, herçend ku nasyonalîst in jî, lê di navendên biryardan de nînin û hewil didin xwe bixin nav desthilat û Artêşê. Ger tu li pêkhata Artêşî mêze bikî, tu dibînî ku ne Kurd, ne Elewî û ne oldar tê de cih negirtine. Lewra pirsa sereke ya kevneperestan ligel rejîmê ye, ev jî wisa kiriye ku bi terzek xwezayî bibin hêza demokratîzekirina Tirkiyê; lê li vir pirsek heye: Bi xwe çiqas demokrat in? Tirkên oldar û kevneperest nasyonalîst in, lê heta ew cihê ku birayên wan ên olî ji wan re pirsan çê nekin. Bo mînak: Misilmanek Kurd ê Diyarbekirê û misilmanek Tirk ê Afyonê bal wan wek hev in û bi yek çav tên mêzekirin. Lê eger Kurd misiliman û older nebe, çare çî ye? Hemû kevneparêz dema rastê vê pirsê tên, disekinin û nikarin ti tiştek bêjin.

**Fethullah Gulen wek rêberê rûhî yê beşek zêde yê kevneperest û oldarên Tirkiyê tê naskirin û di referandûmê de xwedî rolek girîng bû, dema got pêwîst e hemû bêjin "Belê" nirxandina we çawa bû?**

Alîgirên Gulen ji bo serkeftina referandûmê hewlên zêde dan; karîn beşek ji endamên kevneperest ên MHP'ê razî bikin, dengê "Belê" bidin û ev jî bû sebeb ku MHP rûbirûyê alîgirên Fethullah Gulen bibe. Piştevaniya Gulen pir girîng bû, ji ber ku ger wî piştevanî nekiriba û ev nêrîna xwe bi fermî ranegihandiba, eger hebû referandûm bi encama "Na" bi dawî bibûya. Lewra ev ji warê demokrasiyê destkevtek mezin bû.

**Derbarê referandûmê we çi pirs jê kir?**

Derbarê encamên referandûmê me pirs jê kir, heta me jê pirsî çima niha navegere Tirkiyê? Got: "Tirkiye derbarê demokratîzekirinê, xwedî hinek destkevtan e, ez naxwazin bi çûna xwe derbe ji destkevtan bixim. Di rastî de ez hez dikim vegerim, Lê hê ez ê livir bimînim." Herwiha bi girîngî behsa serkevtina referandûmê û reformên yasayî kir û got encama referandûmê kesên ku dixwazin Tirkiyê demokratîze bikin, hêzdar dike.

**We ti pirsek derbarê pirsgirêka Kurd û çareserkirina wê, jê kir?**

Belê, wî wiha bersiv da: 'Rast e xelkê êş û azarek zêde dîtine, li herêmê li dijî wan şaşiyên pir mezin hatine kirin. Dilê xelkê hatiye êşandin û bêhurmetî bi wan hatiye kirin, lê ji bo nûjenkirinê vê yekê, pêwîst e evîndariya xelkê ji bo aliyê xwe rabikişin û diyalog hebe. Niyetên baş û xizmetkirin hebe, ev jî jihevborînê dixwaze. Evîndarî û dostaniyek zêde dixwaze, pêwîst e parêzgar û berpirsên herêmê mirovên dilrehm bin.' Bi baweriya min ew rast difikire û dostaniyek zêde pêwîst e, lê li herêmên Kurdan dostanî bi tenê ne bes e, yanî ger zilikmar jî be, ez ê parêzgarê xwe di nava xwe de hilbijêrim, ev nêrîna xelkê Kurdistanê ye. Ev Fethullah Gulen derbarê hebûna dostaniyê dibêje, rast e, lê bi tenê ne çareser e. Ew wek serokekî olî ku xwedî bandor e, lê hê şer berdewam e û xelk tên kuştin û çek bêdeng nabin.

**Çareserkirina pirsgirêka Kurd, beşek girîng ji pirosesa demokratîzekirina Tirkiyê ye, gelo gotinên wî ev yeka derdixist?**

Li gor têgihîştina min, di nêrînên wî de tundûtûjî ne çareserî ye. Yanî ji bilî tundûtûjiyê her tişt qebûl dibe. Ew dibêje dema tu mirovek bê sûc dikujî tê wateya haşakirina xwedê. Navbirî mirovan wek birayê hev dizane û qebûl nake hev bikujin.

**Dema hûn behsa qiseyên wî dikin, nêrînên xwe jî dibêjin, gelo we tiştê wisa li cem wî jî axifî?**

Belê. Li televîzyona Samanyolu ku televziyona Fethullah Gulen e, bi navê Tek Turkiye (Yek Tikiye) rêzfîlmek heye; ez bawer dikim Gulen jî lê temaşe dike, ev fîlm berevajiyê gotinên Fethullah Gulen e û ti xizmetek bi biratî û aştiyê nake, film behsa Kurdên oldar ên baş û Kurdên bêol ên terorîst dike û wan polênbendî dike! Min pirs jê kir gelo ev fîlm xizmeta çareseriyê dike? Wî got "Dema tu behsa civakek dikî, nabe wan aciz bikî û nabe wan ji bo ser cemseran dabeş bikî, nabe digel hebûn û nebûna mirovan bilîzî!" Heta got: "Çend caran min hewil da pêşî ji belavbûna vê fîlmê bigirim, lê min nekarî." Bawer dikim ger bixwazin pirsgirêka Kurd çareser bikin, pêwîst e bi hûrî mêzeyî pirsê bikin û riftarek rast bikin.

## 'Gulen bi mehan ligel ti kesî qise nake'



**Bejan Matur:** Çend carên din jî derfetên wiha çêbûn, ez bi xwe neçûm, vê carê min hez kir herim. Ji ber ku min wek nivîskarek ku piraniya caran li ser siyasetê dinivîsim, hez kir ji nêzîk ve Gulen bibînim ku li ser siyaseta Tirkiyê xwedî bandor e. Gulen çiqas rêberekî olî be, ew qas kesayetiyekî siyasî ye. Lewra ger em bixwazin civakê nas bikin, pêwîst e rêberên wê yên hizrî jî nas bikin. Em çûn Parêzgeha Pensîlvania ku cihê jiyana wî ye. Ji me re merc danîbûn ku nabe qet ligel Gulen behsa siyasî bikin û ew axaftinên ku li wir tên kirin, ne ji bo belavkirin û behskirinê ne. Dema yên din axivîn, ez jî dikarim biaxivim. Fethullah Gulen li Pensilvania di nav daristanekê de dijî ku rûberê wê 60 hektar e. Tenduristiya wî xirab e û nexweşiya şekir û guşara xwînê heye. Di avahiyek mezin de dimîne û li wir dersê dibêje. Lê pirsa herî ecêb ev bû Gulen bi dirêjiya ew heyamê ku di nav daristanê de jiyaye, tenê 3 caran çûye der û wekî din li mala xwe dimîne û mirov hest dike ku ji cîhanê dûr ketiye.

Dibêjin bi mehan ligel ti kesî qise nake. Me nanê sibê bi wî re xwar, min pirs lê kir, 'çend sal e li derveyî Tirkiyê dijî, hez ji kîja herêma Tirkiyê dikî?' Wî got, 'min ji bilî Hekarî, Artvîn û Sînop, serdana hemû bajarên din ên Tirkiyê kiriye, lê hez dikim vegerim Îzmîrê!' Wek hûn dizanin Îzmîr qelayê Kemalîstan e .

# Ji konan war ava kirine

Ew ji şer reviyan û bi hêviyên mezin berê xwe dan Edenê. Lê ew li wir bê mal û bê hêvî, di rewşeke xirabtir de dijîn.


Wêne: DIHA
Li gundên Tuzlayê 400 malbatên Kurd karê çandiniyê dikin


Wêne: DIHA
Di şûna xaniyan de sal 12 meh di konên naylonî de dijîn û ji bilî çandiniyê sewalan xwedî dikin

**Edene (Rûdaw) -** Li navçeya Tuzla ya Edeneyê Tuzlayê 400 malbatên ku karkeriya çandiniyê dikin, di konên naylonî de dijîn. Malbatên ku ji ber pirsgirêkên aborî û pevçûnên li Kurdistanê dest ji gundê xwe berdane, niha di nava gelek mercên xerab de dijîn.

Dema ku mirov diçe navçeya Tuzla ya Edeneyê, herî zêde karkerên Kurd ku sal 12 mehan di nava zeviyan de di bin konên naylonî dijîn, derdikevin pêşiya mirovan. Ev Kurdên ku ji ber gundê wan hatiye şewitandin, neçar dimînin ku li vê çala bê av, bê ceyran û bê rê de têkoşîna jiyanê didin. Ligel hemû zor û zahmetiyên jiyanê hewl didin ku dîsa li ber xwe bidin û li hemberî dijwariyên xwezayê bijîn. Li Navçeya Tuzlayê û 3 gundan nêzî 400 malbatên Kurd karkeriya çandiniyê dikin. Malbatên ku ji ber pirsgirêkên aborî û şerê li Kurdistanê ji gundên xwe yên li Amed, Riha û Şirnexê hatine û ji bo karê çandiniyê li Tuzla û gundên wê di konan de bicih bûne. Hin malbat 22 sal, hin 14 û hin jî 8 sal in li vir di konan de dijîn. Endamên malbatan ku niha di sereyan de dixebitin, rojê 23 TL heqdestê xwe digirin. Malbat konên xwe jî ji laylonê çêdikin û bi qamîşan dipêçin. Av û ceyran jî aliyê xwediyê axê ve tên pêkanîn, lê pereyê av û ceyranê karker didin. Zarokên di konan de dimînin jî diçin dibistanê û rojên din jî diçin kar. Gelek caran jî ji ber ku tedbîr nayên girtin zarok dikevin Çemê Ceyhanê û tê de difetisin.

**'Em jî dixwazin di nava mercên baş de bijîn'**

Kurdê bi navê Emîn Aydinê 51 salî ku di sala 1987'an de ji ber pêkutiyan ji Gundê Cadirliya Şirnexê hatine Tuzlayê diyar kir ku ev 25 sale wî nekarî ji xwe re avahiyekê çêke. "Ji ber ku em di konan de dijîn îkametgahjî nadin me. Zarokeke mina astengdêr heye. Ji ber îkametgah tuneye ez nikarim meaşê astengdêriyê bigirim. Em jî dixwazin li avahiyan di nava mercên baş de bijîn." Kurdê bi navê Mehmet Işik ku ji Gundê Gurdîla Şirnexê hatiye Tuzlayê jî da nişandan ku ev 14 salin li vê derê ye. Işikê bavê 9 zarokan gazincên xwe wiha anî ziman: "4 zarokên min diçin dibistanê, zarokên din jî di zeviyê de dixebitin. Ti pişeya min tuneye, em tênê ji sewalkariyê fêm dikin. Ji bilî wê tiştek ji destê me nayê. Em êdî dixwazin ji van konan xelas bibin."

# Proje nameşin, jî sedî 95'ê fêkî ji derve tên

Rewa Ebdulla Hewlêr

Hikûmeta Herêma Kurdistanê di sala 2008'an de ji bo sektora çandiniyê projeyên 5 salî saz kir; lê jiber proje encam nadin gelek pêdivî ji deriyên Îran, Sûriyê û Tirkiyê tên Kurdistanê.

Ev bû du sal ku biryara pêkanîna plana stratejîk a 5 salî ya vejandina sektora çandiniyê hatiye standin, lê Herêma Kurdistanê ji bo dabînkirina ji sedî 95'ê pêwîstiya bazara navxwe, pişta xwe hê bi berhemên derve girê dide. Berpirsekî Wezareta Kiştûkalê jî dibêje: "Ji ber kêmbûna butçeyê me nikaribû planê cîbicîh bikin." Bi mebesta vejandina sektora çandiniyê li Herêma Kurdistanê, piştî girêdana 5 konferansan di dawiya sala 2008'an de, ji aliyê Wezareta Çandiniyê plana stratejîk a 5 salî ji bo sektora çandiniyê hat danîn, dû re jî aliyê Civata Wezîran plan hat pejirandin û sala 2009'an li Herêma Kurdistanê wek sala çandiniyê hat binavkirin.

## Sala 2009-2010 sala vejinandina sektora ziraetê bû

Cîbicîkirina planê di 27'ê Cile ya 2011'an de derbasî sala sêyem dibe, lê wek pisporên aboriyê dibêjin heta niha planê navborî di warê çandiniyê de nekariye jêrxaneya Herêma Kurdistanê vejîne.

Rawêjkarê Wezîrê Kiştûkal û Çavkaniyên Avê Hemîd Ebdulla sedemê ne zêdekirina berhemên navxwe bi kêmbûna butçeya dabînkirî ve girê dide û dibêje: "Her çiqasî sala 2009 û 2010'an ji aliyê hikûmetê ve wek sala vejandina sektora zîraetê hat ragehandin, lê di van herdu salan de pereyên herî kêm ji bo vejandina vê sektorê hatin veqetandin, herwiha Wezareta Darayî nekariye vê butçeyê jî ku Civata Wezîran qebul kiribû, di dema wê de dabîn bike."

Hemîd Ebdulla ji cîbicîkirina vê plana stratejîk bêhêvî bûye, loma dibêje: "Me biryar da di salvegera kongreya plana stratejîk a sektora çandiniyê de ango di 27'ê vê mehê de, konferansekê li dar bixin û planê bi awayekî hûrbîn bişopînin û ligel butçeya salane ya ku ji me re tê veqetandin, biguncînin."

## "Ger dewletên cîran derî bigrin, Kurdistan bê fêkî dimîne"

Umêd Hemed ku xwediyê nivîsîngeha Hîwa ya firotina berhemên şînkahî û fêqiyan li gumrika Hewlêrê ye, dibêje ji sedî 95'ê berhemên ku niha li bazarên Kurdistanê hene ji derve hatine: "Ger welatên derdorê heta mehekê sînorên xwe ji Kurdistanê re bigrin, Herêma Kurdistanê bê şînkatî û fêqiyan dimîne."

## Ji bo projeyan 10 milyar û 471 milyon û 297 hezar dolar pere hahtiye veqetandin.

Hemed rexneyan li Wezareta Çandiniyê digre ku ji bilî derbasbûna du salan di ser plana stratejîk re nekariye wek ku tê xwestin berhemên navxwe zêde bike: "Mêweyên navxwe her ku diçe kêm dibin. Niha em tenê pîvazan ji Îran û Sûriyê û kahûyan jî ji Îranê tînin."

Plana stratejîk a vejandina sektora çandiniyê ji 1465 projeyên vejandina sektora çandiniyê pêk tê û dema wê 5 sal hatiye danîn û ji bo pêkanîna vê planê 10 milyar û 471 milyon û 297 hezar dolar pere hahtiye veqetandin.

Rêveberê Giştî yê Plan û Şopandinê li Dîwana Wezareta Çandiniyê Enwer Umer Qadir amaje da ku bi butçeya van herdu salan ji wan re hat misogerkirin, karîne ji sedî 10'ê berhemên fêkiyan û ji sedî 20'ê keskahiyên navxwe zêde bikin, ku berhemên fêkiyan ji 53 hezar tonan bo 70 hezaran zêde bûye, keskahî jî ji 250 hezar tonan bo 350 hezaran zêde bûye.

Herêma Kurdistanê xwediya 8 milyon donimên zeviyên çandiniyê ye, lê tenê 800 hezar donimên wê berav in, loma piraniya zeviyan pişta xwe bi baranê girê didin û di rewşên kêmbûna baranê û hişkesaliyê de sûd ji wan nayê wergirtin, lewra di butçeya daxwazkirî ya projeyê de pişka herî zêde bi mebesta avakirina bendavan, gihîşt Wezareta Çavkaniyên Avê ya berê. Lê ev wezaret di kabîneya nû ya hikûmetê de nema û bi Wezareta Çand iniyê re bû yek.

Wezîrê Darayî û Aborî yê Hikûmeta Herêma Kurdistanê Bayiz Talabanî red dike ku Wezareta Darayî ji bo sektora çandiniyê di dabînkirina butçeyê de xemsar bû û got: "Di çarçova butçeya me de her çi xwestibin û di planê de hatibe cihgîrkirin me ji wan re misoger kiriye, ji ber hikûmet girîngiyeke taybet dide aliyê çandiniyê."

## "Hikûmetê butceya pêdivî terxan nekir"

Aborîzan Îdrîs Remezan dide zanîn ku ji bilî kêmbûna butçeyê xala lawaziya plana stratejîk a sektora kiştûkalê, nebûna hemahengiya seranserî bi mebesta serxistina plane ye û dibêje: "Ne bikarber bi mebesta serxistin û vejandina berhemên navxwe ewqasî rewşenbîr e ku hinekî zêdetir ji nirxê yên derve bide berhemên navxwe, ne jî hemahengiyeke baş di navbera wezaretên peywendîdar ên plana stratejîk de heye, herwiha hikûmetê jî nekariye ji bo serxistina vê plane butçeya pêdivî terxan bike, lewra plan bê bandor ma."

## Amedspor naxwaza winda bike



*__Rûdaw -__ Tîma Lîga Amator a Grûba B Amedspor di nîvê duyem ê lîgê de herdu maçên dawî bi serket. Berdevkê çapemeniyê Ekrem Aycan daxuyand ku ew niha du pûanan li pey Sur Belediyesporê ne û ji bo bigîhin armanca xwe naxwazin ti maçekî winda bikin. Aycan wiha axivî: “Me di nîvê duyem de rêzeke baş girt. Em dixwazin vê rêzeserkeftinê bidomînin. Tîm çiqas maçan bidest dixe, ewqas jî moral distîne. Ji bo em karibin himberên xwe yên Play-Off'ê têkbibin, divê em hertim biserkevin. Baweriya me bi kadroya me heye.”*

# Diyarbakirspor hejiya



**Amed (Rûdaw) -** Tîma Amedê Diyarbakirspor, ji ber pirsgirêkên aborî, ji 36 lîstikvanên ku transfer kiribû, 14'ên wan winda kirin. Kampa amadekariyê, ku li Antalya dom dikir, ji ber veqetandina çendîn lîstikvanan belav bû. Waliyê Amedê Mustafa Toprak jî got Diyarbakirspor ne tîma gund û navçeyekî ye, ya 1,5 milyon Amediyan e û bang li rêveberiya klûbê kir, “Ya pirsgirêkan çareser bikin, yan jî îstifa bikin.”

Di destpêka sezonê de Klûba Diyarbakirsporê 36 lîstikvanên nû transfer kiribû. Ji van lîstikvanan 14 kesên ku di maçan de hertim di nava kadroya 11 kesî de cîh digirtin, ji ber ku heqdestên xwe negirtin dev ji Diyarbakirsporê berdan û hinek ji wan bi klûbên din re peyman îmze kirin. Ufuk Bayraktar bi Samsunsporê re, Zafer Şakar bi Gaziantep BB. re, Korcan Çelikay bi Sivassporê re, Onur Çubukçu bi Adana Demirsporê re û Savaş Bahadir jî bi Konya T. Şekersporê re lihev kirin û peyman îmze kirin. Li aliyê din Suat Usta bi Y. Malatyasporê re, Tufan Esin û Engin Oztonga jî bi Kartalsporê re hevdîtin çêkirine û Ali Cansun, Umut Eskikoy û Gilman Lika jî li klûbên nû digerin.

**Ev lîstikvan ji Diyarbakirspor veqetiyan**

***Ufuk Bayraktar, Zafer Şakar, Korcan Çelikay (Qelevan), Onur Çubukçu, Savaş Bahadir, Suat Usta, Tufan Esin, Engin Oztonga, Ali Cansun, Umut Eskikoy û Gilman Lika.***

**Kaya û Korukir çûn, Albay hat**

Di destpêka sezonê de Klûba Diyarbakirsporê Suat Kaya wek antrenor hilbijart, lê ji ber çend maçan li dû hev têkçû, di şûna wî de bi Engin Korukir re peyman îmze kir. Lê Diyarbakirspor di bin antrenoriya Korukir de tenê yek serkeftin û du wekhevî bidestxist. Piştî ku Engin Korukir jî nekaribû pirsgirêkan çareser bike, wî jî îstîfa kir û niha antrenoriya tîmê Ercan Albay e. Li aliyê din, kampa amadekariyê ku di navbera sezonê de li navçeya Kemer a Antalyayê dom dikir, ji ber ku lîstikvanan heqdestên xwe nestendin, dev ji kampê berdan û kamp nîvco ma.

## Waliyê Amedê: An çareserî an îstifa!

Li aliyê din nîqaş û rexneyên di navbera Serokê Klûba Diyarbakirsporê û Waliyê Amedê de didomin. Piştî rexneyên Sumer, Waliyê Amedê Mustafa Toprak jî civîneke çapemeniyê lidar xist û rewşa Diyarbakirsporê nirxand û banga îstîfayê li rêveberiya Diyarbakirsporê kir.

Toprak ji bo rewşa xirab a tîmê çareser bikin bang li endamên klûbê jî kir û got “Diyarbakırspor dinamoya bajarê me ye. Li vî bajarî 1.5 niştecîh hene. Eger em niştecîhên herêmê û sempatiya wan a li Diyarbakirsporê jî bihesibînin, em dikarin bêjin bi milyonan alîgirên vê tîmê hene. Her kes dipirse, wê rewşa Diyarbakirsporê çawa be?” Toprak got gel ji bo çareseriyê ji wan hêvî dike, lê tenê ew nikarin pirsgirêkan çareser bikin û bang li endaman kir. Mustafa Toprak bibîrxist ku ti carî Diyarbakirspor neketiye rewşeke wisa û wiha axivî: “Baweriya ti kesî nemaye. Berê 20-30 hezar temaşevan diçûn maçan, niha 800-900 kes diçin. Sedemê vê jî rêveberî ye. An rêveberî wê pirsgirêkan çareser bike yan jî rê li pêşiya hilbijartina rêveberiyeke nû veke.”

# Rojnamevanên sporê gazincan dikin



Saman Birîfkanî



Senger Zerarî

**Hewlêr (Rûdaw) -** Ji bo sala 3mîn Wezareta Kultur û Ciwanan a Hikûmeta Herêma Kurdistanê, festîvala Ciwanê Salê li dar dixe û ji bo beşdarbûna di vê festîvalê de, ciwanên çalak di warên cuda de, profîlên xwe dişînin wezaretê. Li gor mercên wezaretê îsal ciwanên heta temenê 35 salî dikaribûn beşdar bibin. Rojnamevanê sporê, Reza Kakeyî profila xwe neşandibû wezaretê, ji ber ku temenê wî ji 35 saliyê derbaskiriye, lê ew giliyê dike û dibêje ”Salên berê jî min pêşkêş nekir, ji ber ku ez dizanim ev kar bi heqî nayê kirin.“ Senger Zerarî jî got ”Sala yekemîn ji min re gotin temenê te rê nade, ez nizanim eger nedin me, gelo wê di pîriyê de me xelat bikin, yan dema em dimirin?!” Senger dibêje, ”Îsal haya min jê nebû, lê eger min profila xwe şandiba jî wê dîsa tiştek nedaba me, ji ber ku ew kar bêtir li ser bingeha hevaltî, partîtî û herêmtiyê tê pêkanîn.”

Saman Silêman jî ku profila xwe ne şandibû, hember dilgiraniya xwe nîşanda ku ti rojnamevanekî werzişî ji baştirînan derneket: ”Pêwîst bû bi kêmanî rojnamevanekî werzişî di nava baştirînan de bûya, pêwîst bû Rêvebiriya Ragihandina Wezareta Rewşenbîrî û Ciwanan guşar xistiba ser komîteyê ji bo ku rojnamevanên werzişî nehatiban piştguhxistin.” Herwiha rojnamevan Saman Birîfkanî jî derbarê neşandina profila xwe dibêje: ”Temenê min rê bide yan na, ez naşînim, ji ber ku baweriya min tune û kesê baştirîn li ser bingeha astbilindiyê nayê diyarkirin.”

## Nîvrastî ji derewan metirsîdartir e



**David Romano**

Nîvrastî dibe zerera wê pir zêdetir û domdirêjtir be ji derewên berçav, lê hin caran pêwîstiya mirov bi nîvrastiyê heye. Ji bo mînak temaşeyî 'Demokrasîyê' bike: Li ti welatekî demokrasiyek temam nîne, her wekî em di dema hilbijartinan de dibînin ku tiştên hatine sînordarkirin, sozên ku cîbicî nabin û 'Siyasetên Polîsî' yên welatan, ev hemû vê yekê îsbat dikin, lê dîsan jî hewldana ji bo demokrasiya bêtir dimîne rêya herî baş e, vêca baştire mirov bi xwe bêje demokrasî li şûna nedemokrasiyê.

Lê dema nîvrastî dibe slogan ji bo dûrketina ji xwe helsengandin û reform xwestinê, wê demê wê zerermend bibe. Berî demekê Serokwezîrê Tirkiyê dirûşmeke nîvrast bilind kir û got hemû neteweyên li Tirkiyê wekhev in. Ji piranî yan ji kêmîne be, her ferdekî van 73 milyon hevwelatiyên me wekhev in."

Piraniya çalakvanên Kurd ên siyasî ew daxuyanî red kirin û weke dereweke berçav binav kirin. Vê yekê jî wisan li wan kir ku hêza wê nîvrastiyê nebînin. Helbet dema îdeolojiya Dewleta Tirk tê ser meseleya hevwelatîbûn û meseleyên navxweyî, dewlet ne netewperest e (...). Ji bo mînak li Tirkiyê her kesê ziman û çanda Tirkiyê hembêz bike û pê razî be, wê bibe hevwelatiyek baş (...).

Lê li gel vê yekê jî Tirk timî şanaziyê bi vê taybetmendiya welat û civaka xwe dikin. Bi taybet jî ku diyardeya netewperestiyê li gelek welatan hêjî belav e. Bandora vê îdeolojiyê wisan kiriye ku gelek Tirk jiyana xwe bêxin metirsiyê, biçin nav artêşê, li navçeyên derdorê rojhilat bibin mamosta, wekî karmendek hikûmetê kar bikin û bêyî bibin nêçîra gendelî û xerab karanîna deshilatê. Di rastiyê de jî ew yeksaniya ku nîvrast e, yeke ji wan tiştên ku bûne sedema ku dewlet û civaka Tirk di çavê hejmarek zêde ya welatên navçeyê de bi awayek baştir rêve biçe.

Lê li gel vê yekê jî li Tirkiyê neyeksanî bi nîvrastî maye û nabe bibe sloganek ji bo xwe rizgarkirina ji rexneyên cidî. Dewleta ku nasnameya xelkê xwe li ser bingeha ziman û çanda neteweyekê dane û ziman û çanda neteweyeke din qedexe dike, ew bi ti awayî yeksaniyê di navbera neteweyan de pêknayine. Ziman û çand ji xelkê re tiştên zêde giring in. Yekem rewşa veguhestina kevneşopiyên bav û bapîran, ji dema derketina mirov ji zikê dayikê pêk tê. Mafê hemû hevwelatiyan yê ji bo têkelbûna çand û zimanê tirkî bi şêweyê ku zimanê dayika xwe red bikin û xwe bigihênin çandeke din, ragihandina yeksaniyê dike henekpêkirin.

Tirk ewqas şanaziyê bi çand û zimanê xwe dikin ku ew redkirin û şermezarkirina berdewam a Kurdan a li hember çand û zimanê wan tê dikin, nabînin, ji ber wê yekê belê birêz Erdogan: li Tirkiyê hemû netewe yeksan in, lê hinek ji yên din yeksantir in.

## Kalas...Dojeha penaberan

**Rêbiwar Kerîm Welî**



Kalas yan bi qewlê Fransiyan "Kalê", 230 km dûrî Parîsê ye û dikeve bakurê Fransa. Ev bajar dikeve ser geliyê Dover, ew cihê ku Fransa û Brîtanya bi tûnelekê bi kûrahiya 72 metroyan ava derya Manş bi hev re girê dide. Pehniya vê valahiyê 32 kîlometro ye, lê derbaskirina van 32 kîlometroyan xewna her şev a bi sedan penaberên Kurd, Efgan, Îranî û Somalî û yên din e ku jiyana herî dijwar û nexweş derbas dikin.

"Mamoste, tenê dixwazim derbasî wî alî bibim!" Çiqasî ji wan re dibêjim li wî alî tiştek tune, lê ciwanekî sîpe yê ji aliyê Pişder ku bi qaçaxî ji Raniya xwe gihandiye vî bajarê ser sînor, tiştekî din nafikire ji bilî ku xwe bigihîne Brîtanya.

Hefteya borî ligel hevkarên xwe yên kevin Ako Mihemed û Hêmin Ebdulla, ji Parîsê bo dîtina jiyan û reşwa sedan Kurdên Iraqê ku li Kalasê dijîn, me da ser rê. Ti agahiyeke kesî ji me derbarê cihê mabûn û vehewandina wan nîne. Digotin di nav daristanan de dijîn. Sermaya Ewrûpa di bin sifrê de ye, heta mejiyê hestiyên mirov hest pê dikin.

Piştî bidestxistina hinek agahiyan ji polîsên sînor û şarevaniya Kalas dawî em gihiştin wî cihê ku bi dehan penaberên Kurd ku piraniya wan rewal in ligel dehan penaberên din ji regez û miletên din di bendewariya paryek nanê belaş de xwe rêz kirine. Saziyeke xêrxwaz a Frensî her roj sê caran xwarinê dide wan: "Bi Xwedê ne bi şukirê be nayê xwarin, lê neçar in." Ciwanekî ku mozek û tepsiyek birinc wergirtiye, li ser piyan dixwe….

Piştî xwarinê dinya bi tevahî tarî dibe, pêşniyara me kirin û me bibin hundirê kampê. Di saloneke biçûk de ku bihna genî jê tê, sedan kesan wek pez û dewaran serê xwe daniye. Kurd sî-çil kes in ku du jî wan jin in û zarokekî biçûk jî ligel wan heye. "Dema bû zivistan vir ji me re vekirin, di havînan de jî digrin."

Xweşûştin her heft rojan carekê ye, dema çarîkekê dema wan heye li nexweşxaneyeke bajar xwe bişun. "Ev dever buhişt e, hûn herin Danking -bajarekî din ê nêzîkî Kalas e- ew di daristanê de dijîn, di van rojan de 150 kesên din ji Kurdistanê gihiştine…" Li daristaneke nêzîka Danking, dîsa dehan Kurdên din bi naylonê holikên biçûk ava kirine û li ber agir dilerizin. Dîmen hingî trajîk in nikarî têbigihe çi dihêle zarokekî rewal ê 16 salî di vê rewşê de li benda derbasbûna bo Brîtanya bimîne! "Jiyan li Kurdistanê tune" Tevî ku ev bersiv klasîk e jî, nikare min bide qanehkirin, lê her kes xwedî behaneyên xwe yên taybet e.

Her kes ji van xwedî pirsgirêk û çîrokeke taybet e. Yekî ji wan nekariye keça ku jê hez dike bixwaze û rastî arîşeyan hatiye û reviyaye, yekî din bo kuştina jina xwe diçe Brîtanya, yê din piştî 4 salan jiyan li Brîtanya, ji nû ve daye ser rê…Çîrok nêzîkî hev in, lê hemû direvin, ji çi, ji kê? Hemû jî derbiderê sîstema girtî ya civaka Kurdistanê ne. "Dixwazim bijîm, li Kurdistanê jiyan tune." Heta jê hatiye heşîş kişandiye, çavên wî bi zorê vedibin. Ev gotina sîpeyekî din e. "Em hemû bûne heşaş."

"Mamoste em dizanin rewş çî ye, lê divê em xwe bigihînin." Bihna genî ji wan tê, dibêjin dema diçin nav pasê wan derdixin, li xwaringehan nan nadine wan. Polîs wan digrin, mohrên pencên wan dibin û wan li derveyî bajar peya dikin heta bi piyan du saetan bidin ser rê, dibe bêzar bin û wir bi cih bihêlin, lê çok nabin.

Dema van ciwanan bi vî rengî dibînim tevzînok digrin laşê min, pir guneh in, hest dikim pir zû hilweşiyan, bo dîtina hinek azadiya civakî û bihnkişandinekê, ji dojeha kevneşopî û tradisyonên civaka Kurd reviyan, lê ketin dojeheke din. Bi hêviya derbasbûnê, roj bi roj dihelin… Ti dawiya vê gotara min tune ji ber kezeba min li ser van ciwanan şewitî û hê jî dişewite….

## Hîzbullah: Navgîna îslamî ya Dewleta Kûr

**Zafer Yörük**



Li gor helwesta klasîk a teoriya siyaseta modern, di demokrasiyên rojavayî de guhertinên radîkal nayên dîtin, daxwazî bi reforman tên pêşwazîkirin.

Nêzîkatiyên rexnewarî vê daxûyaniyê gelek hêsan didît û lewma modelên nû yên teorîk ên bi detay ku tevnên sofîstî yên desthilatdariya siyasî ya di civakê Rojavayî de analîz dike, derxistin holê.

Yek ji van rexnevanan Louis Althusser bû ku cudatiyek xiste nava "navgîna zextker a dewletê" û "navgîna îdeolojîk a dewletê". Li gor danasîna Max Weber ku bingeha saziyên dewletê û hiqûqê çêkiriye, mafê dewletê yê li herêmekê bikaranîna hêzê rewa ye.

Navgînên dewletê yên îdeolojîk, herwiha ji aliyê din ve jî dewlet, ji bo întegrekirina dewletê û civaka sîvîl hewl dide hinekî wext çêke. Bi gotineke din hêza dewletê belav dibe û lewma navgînên îdeolojîk ên dewletê operasyonê êdî di civaka sîvîl de belav dikin.

Li Tirkiyê di dema şerê li dijî Kurdan de em bûn şahidê du cûreyên operasyonan. Me ji aliyekî ve navgînên taybet ên paramîlîter ên weke Jîtem û Koriciyan, ku bi armanca bihêzkirina zexta dewletê seferber bûne, dît. Û ji aliyê din ve jî operasyonên dijwar ên li dijî saziyên çapemeniyê, saziyên olî, partiyên siyasî û dibistanan ve hatin lidarxistin, dît ku ev jî bi armanca çewisandina daxwazên siyasî yên Kurdan bûn.

Li gel vê yekê, li bajarên Kurdan ji bo jiholêrakirina sempatîzanên PKK'ê, 'di peymannameyên qirêj' ên dewletê de komeke mîlîs jî cîh digire. Navê vê koma ku bi alîkariya dewleta laîq a Tirk hatiye sazkirin Hîzbûllah e (Partiya Xwedê, komeke radîkal a Sunnî ye û ti eleqeya xwe bi Hîzbûllaha Şîî ya li Lûbnanê re tune ye). Hîzbûllah ku ji 156 bûyerên kuştinan berpirsyar tê girtin, di sala 1993'an de, di serî de Parlamenterê DEP'ê Mehmet Sîncar, herwiha gelek çalakgerên Kurd qetil kir.

Ya rastî tevgera Hîzbûllahê piştî ku pêwîstiya dewletê pê nema, (bi taybetî piştî ku Serokê PKK'ê Abdullah Ocalan di sala 1999'an de hate girtin) di sala 2000'an de li Stenbolê bi operasyoneke polîsê Tirk ve ji holê hat rakirin. Di encamê de Serokê Hîzbûllahê Huseyin Velioglu hat kuştin û endamên din ên rêxistinê hatin girtin.

Di 4'ê Çileya sala 2011'an de, ji bo cezayê 18 serkêşên Hîzbûllahê qanûnek nû hat derxistin. Bi hinceta ku gelek wext di ser re derbas bûye, piştî 10 salan serbest hatin berdan. Di eslê xwe de ew ji aliyê Dadgeha Ceza ya Diyarbekirê ve bi cezayê mûebet hatibûn mehkûmkirin.

Serbestberdana 18 kujerên Hîzbûllahê ji aliyê Serdozgeriya Dadgeha Bilind ve, bû sedema nerazîbûneke nû. Bi nêzîkbûna hilbijartinên giştî re AKP bi serbestberdana endamên Hîzbûllahê hewl daye ji xwe re pareke mezin derxîne holê. Bi vî awayî mirov dikare sedemê serbestberdana endamên Hîzbûllahê baştir fam bike.

Hîzbûllah ne tenê weke komeke mîlîs, herwiha li bajarên Kurdan weke neyarê yekemîn ên PKK'ê tên pejirandin. Wan PKK'yiyan weke 'bê dîn' bi nav dikirin û bi vê yekê gef li xelkê dixwarin. Ango piştî ku di 2000'an de baskê wê yê leşkerî hat rûxandin û vir ve alîgirên wê yên di nav gelê Kurd de jî fireh û zêde bû. Li bajarên Kurdan hejmara wan weke 20 hezar çalakvanan tê texmînkirin.

AKP di hilbijartinên li pêş me de naxwaze meydanê bide partiya alîgirê Kurdan BDP'ê. Em dikarin xeta antî-PKK'tiya Hîzbûllahê weke hêviyeke AKP'ê ya propagandaya li dijî BDP'ê bidin ber hev. Bi gotineke din, serbestberdana qatîlên Hîzbullahî dikare di hilbijartinên 2011'an de bibe sedem ku Hîzbûllaha bingehîn, a ku weke 'navgîna îdeolojîk' tê binavkirin, sûdek gelek mezin bide AKP'ê.

Lê belê divê neyê jibîrkirin ku Hîzbûllah ne tenê navgîneke AKP'ê ye. Ew di heman demê de ji derveyî beşên laîq û îslamî ye û bi vîzyona "dewleta kûr" tê xwedîkirin. Ya rastî xeta Hîzbûllahê ya salên 1980 û 1990'an, di bin navê dijberiya olî, bi propagandaya xwe ya li dijî PKK'ê ya li bajarên Kurdan, bersiv daye daxwazên Dewleta Tirk.

Li jor, li gor kategorîzeya Althusser, Hîzbûllah weke navgîneke dewleta zextker û îdeolojîk derketiye holê. Ew bi giranî ji aliyê Dewleta Tirk ve weke navgîneke dewletê ji bo xûrtkirina nasnameya îslamî hatine bikaranîn. Lewma serbestberdana qatîlên Hîzbûllahî bi vê mijarê ve girêdayî tenê weke xizmeta wan a dawî ji bo AKP'ê, anjî komeke din a siyasî nikare were binavkirin. Serbestberdana wan divê weke jesteke "dewleta kûr" a li hemberî xizmetkarên xwe yên dilsoz nîşan dane, were famkirin.

**Jêrgotin: Zafer Yoruk di navbêra salên 1997 û 2006'an de li Zanîngeha Londonê dersên teoriya siyasî daye. Mijarên ku pê ve eleqedar dibe: nasname, rastiya siyasetê, analîza gotinê û analîza psîkolojiyê ye. Ew bi xwe her roja înê ji bo Rûdawê quncikekê dinivîsîne.**


Tutê Dîyarbekirî neslo vîndîbîyaye

# Tutê Dîyarbekirî benê vîndî

**Dîyarbekir (Rûdaw) -** Goreyê îstatîstîkanê resmîyan, Dîyarbekir de çar serranê peyênan de 1776 tutî bîyê vîndî. Yanî, serra 2007î de 319, 2008î de 396 tutî, 2009î de 514 û serra 2010î de zî 547 tutî bîyê vîndî.

Nê tuatn ra, se ra 39ê înan şîyê mîyanê gerîlayan. Zafê tutanê ke şîyê mîyanê refanê gerîlayan, semedo ke derheqê înan de dewayî abîyê û ameyê mehkeme kerdene. Se ra 23 seba ke bizewijîyê û se ra 8 zî seba ke dekewê mîyanê grûbanê sucî keye ra remay.

Goreyê reqemanê resmîyan emser Dîyarbekir de hezar 175 tutî ke nînan ra 67 hebî kêna yê, dekewtê mîyanê sucî.

Komîsyonê heqanê merdiman yê meclisa tirkan, mekteb, pansîyon û stargehanê tutan yê Dîyabekirî de yew tehqîqat viraşt. Goreyê tehqîqatê nê komîsyonî, mîyanê des aşmanê verênan yê serra 2010î de 1.175 tutî Dîyarbekir de dekewtê mîyanê sucanê ke vera şexs û malî de bîyê. Hewna, goreyê tehqîqatê nê komîsyonî, 547 tutanê vîndîbîyayan ra 518ê înan verê dadî û babîyê xo de manenê la keyeyê xo terk kerdo û bîyê vîndî. Par des pitî, emser zî yew pit kuçe de bêwayîr ameyo terk kerdene.

Goreyê malumatanê nê komîsyonî, zafê tutan qesten merdiman birîndar kenê, dizdî kenê û zerar danê malê merdiman ro.

# Dîrektor taximê xo otele ra îdare keno


Dîrektor Wolfang Sidka

Dîrektorê taximê mîllî yê futbolî yê Îraqî Wolfang Sidka maçanê taximê xo Hewlêr de yew otele ra teqîb keno. Dîrektor muşkileyanê asayîşî ra nêşêno şiro Bexdad, coka dûrî ra taximê xo îdare keno.

Wolfang Sidka ke futbolîstêko namdar yê almanan o û serranê 1980an de taximanê sey Herta BSC, München 1860 û Werder Bremen de tope kay kerdêne, aşma tebaxe ya 2010î ra nat bîyo dîrektorê teknîkî yê taximê mîllî yê futbolî yê Îraqî. Wolfang Sidka vano, "Hewlêr de kurdî hol miqateyê mi benê. Hedefê mi no yo ke taximê mi kupaya Asya bigêro, labelê ganî ez bişênî tîya ra vejîyî."

Wolfang Sidka vano, "Mi tena reyke Bexdad dîyo. O zî, gama ke ma Urdun ra ameyêne, teyareyê ma Bexdad de na ro, la bê ke ez meydanê teyareyan ra vejî teber, hewna ez wenişta teyare û ameya bi Hewlêr."

Wolfang Sidka, nê hîrê serranê peyênan de dîrektorê çarin o ke taximê mîllî yê furbolî yê Îraqî îdare keno. Wolfang Sidka vano, "Hetanî ke ez resaya tîya ma tam 40 nuqteyanê kontrolê asayîşî ra vîyartîy. Hewlêr de kurdî mi rê zaf hol ê. Tîya her çî esto; restorantê almanan, heşt tewirî bîra, ti çi biwazî peyda beno."

## Peçeteyê kolonyayinî zerar danê sihetê ma



Pisporê tenduristîye ma hîşyar kenê ke peçete yan zî desmalê hazirî yê kolonyayinî seba ke madeyê kîmyayî tede estê, zerar danê sihetê ma. Pisporî vanê, eke şima bi peçete yan zî desmalanê kolonyayinan destê xo pak bikerê, muheqeq ganî şima destanê bi awa pake hol bişuwê.

Seke yeno zanayene nê serranê peyênan de peçete û desmalê kolonyayinî her ca de estê. Restorantan de, mekteban de, keye de, cayê karî de, nêweşxaneyan de, axir her ca nê peçete û desmalî yenê bikarardiş. Heta ke binê pitikan zî bi nê peçete û desmalan pak beno. Nê peçete û desmalî bi amancê ke hîjyenîk ê, yenê bikarardiş la tede madeyê kîmyasalî estê.

Gama ke merdim yew peçete yan zî desmala kolonyayine biesirno ci ra yew tewir awe yena war. Na awe kîmyayî ya. Eke merdim zaf wext pêsero nê peçeteyan bikar bîyaro, canê merdimî ser o madeyê kîmyayî yenê pêser û zerar danê sihetê merdimî. Bitaybetî tutê ke canê înan şeliqîyayo, eke bi nê peçete û desmalanê kolonyayinan bêrê pak kerdene, madeyo kîmyasal hîna leze û bi asanî keweno mîyanê gonîya pitikan.

Heto bîn ra, pisporî danê zanayene, seba ke teleb zaf o, zafê nê peçete û desmalan goreyê standardan ra nêvirazîyênê, yanî, fîrmayê ke ruhsetê înan çin o, nê mehsulan virazenê û dekenê pîyase. Yanî, dereceyê madeyê kîmyayî ke peçete û desmalan de esto zî hetê dezgeyanê sihetî ra kontrol nêbeno.

Pisporî vanê, pakîtîya tewr hole a ya ke merdim bi sabun û awa pake destanê xo bişuwo. Hetanî ke mumkin o, merdim peçete û desmalanê kolonyayinan nêgureno, hîna hol o.

## Gagauzkî zî dekewte mîyanê ziwananê ke do vîndî bibê

Rêxistina Perwerde, Zanist û Hunerî ya Yewîya Miletan (UNESCO) da zanayene ke gagauzkî zî dekewta mîyanê ziwananê ke do vîndî bibê.

UNESCOyî gagauzkî dekerde mîyanê atlasê înteraktîfî yê "ziwanê dinya ke binê tehlukeyê vîndîbîyene de yê".

Gagauzkî Moldova û Ukrayna de hetê 180 hezar kesî ra yena qisey kerdene la hewna zî ver bi vîndîbîyene şina. Di lehçeyê bingehînî yê gagauzkî estê. Nînan ra yewe lehçeya çadir lunga komrat û ya bîne lehçeya vulkaneştî yê. La bê nînan zî çend lehçeyê têmîyanekî yê bînî zî estê.

## Ewropa de serdemê qeşa

Pisporê meteorolojî yê Îngilîstanî şarî hîşyar kenê ke seba "sedemêkê qeşayî yê mînî" xo amade bikerê.

No zimistan Ewropa de hewa zaf serd o la pisporî vanê do hîna zî serd bo. Vanê senî ke 327 serrî verê cû royê Thamesî cemidîyabi, do hewna wina serd bo.

Pisporê hewayî Brian Gaze vano, aşmê çele û sibate do her wextî ra vêşêr serd bê, qet suprîz nîyo ke hewayo serd hetanî nêmeyê aşma adare dewam bikero.

Pisporê meteorolojî Ian Michael Waite zî vano, ma wina texmîn kenê ke aşma çeleyî do normal ra vêşêr serd bo, îhtîmal nîyo ke ma demeyêkê kilmî de nê serdemê qeşa yê mînî ra vejîyîn.

Seke tarîx de behs beno, vanê, zimistanê 1683-84 de royê Thamesî hende cemed girewtbi ke serê çemî de fuarî abibîy, şarî estorî dabîy vazdnayîş, hoqebazan numayîş kerdbi.

# 1932 otombîlên dewlemendtirîn serokê cîhanê hene



Sultanê Bronay Hesen Bolqiye, ku wek zengîntirîn serokê cîhanê tê jimartin, pir ji komkirina zêran hez dike û sermayeya wî her çirkekê 90 Euro zêde dibe û piraniya madeyên koşka xwe bi zêran çêkirine.

Di koşka Hesen Bolqiye de 1788 ode û 257 tuwalêt hene. Herwiha di vê qesrê de 650 tabloyên cuda hene ku nirxê wan digihe 150 hezar Euro. Her mêvanê ku bixwaze serdana odeyên koşkê bike, bi kêmanî 24 saet jê re pêwîst in. Du firokeyên Boing 747 ên sultanê Bronay jî hene ku dîzayna hundirê wan bi kêfa xwe çêkiriye, nemaze serşok û banyoya wê ku piranî bi zêr û elmasan hatiye çêkirin û nêzîka 120 milyon Dolar li wan hatiye xerckirin.

Sultanê Bronay nêzîka 5 milyon Dolar ji bo merasima jinanîna kurê xwe xerc kirin. Di ahenga jinanîna kurê Sultanê Bolqiye de, zêdeyî 25 serok û jinên rayedarên cîhanê amade bûn, otombîla wî bi zêr hat xemilandin. Herwiha hejmara tevahiya otomobîlên Hesen Bolqiye derdora 1932 ne.

# Kanî bû dayik



Hunermend Kanî li nexweşxaneyeke Swêdê welidî û nûxuriyek jê re çêbû. Çavkaniyeke nêzîk a hunermend Kanî ji bo Rûdawê ragehand ku di van çend rojên borî de Kanî li nexweşxaneyeke Swêdê yekem kurê xwe anî dinyayê. Herwiha diyar kir ku piştî demekê wê Kanî dîsa dest bi karê xwe yê hunerî bike.

# Perdaxa Hawta Esad tije bû



Hunermend Hawta Esad yek ji wan stranbêjan bû ku ligel keça xwe tevî ahenga bidawîhatina kongreya 13'an a PDK'ê bû. Di dema derketina ser dikê de dest bi xwendina peyamekê kir, lê ji ber kêmbûna demê nehiştin peyama xwe xilas bike û daxwaz jê kirin stranan bêje. Hawta Esad ku peyama xwe ji Rûdawê re şand, behsa rewşa "xerab" a niha ya hunera kurdî û jiyana xwe jî dike û dibêje: "Wiha dizanin ku di kêfxweşî û bexteweriyê de dijîm, tevî jimareke qise û qiselokên sofîgeran û girêdana bi partiyên cuda... Wiha tê zanîn ku ez di serê tevahiya hembêzkiriyan de bim, lê belê nizanin 14 salan di nav çar dîwarên malê de bê meaş û awirdanek, fêrên perwerdekirin û hunera resen didim zarokan. Ligel vêya jî min nehiştiye bi paşguhxistina min bê zanîn, lê wek Kurd dibêjin: Ger perdax tije bû, av dirije." Hawta Esad diyar dike ku ger rewş wiha bidome wê: "Hunera Kurdî nasnameya xwe ji dest bide."

# Klîpa Nazikê ne bi dilê wê bû



Stranbêj Nazik Selîm niha klîba strana xwe ya herî nû ya bi navê "Te ji bîr nakim" dikişîne û di destpêka 2011'an de wê bê belavkirin.

Stranbêja ji devera Behdînan, Nazik Selîm ji bo Rûdawê diyar kir ku niha bi dûbare wênekişandin û klîpkirina strana albûma xwe ya bi navê "Te ji bîr nakim" ve mijûl dibe û got: "Wênegirtina vê berhemê wek pêwîst derneket, lewra min belav nekir û niha bi dûbare wênegirtin û klîpkirina vê strana

**Çeperast:** 1- Stranbêjek Kurd. 2- Pozîtîf, baş – Notayek – Tingal, gir. 3- Otêl, ciyê mêvanan. 4- Çûn, qeder – Heywanek. 5- Lîztik, fen û fût – Kesê Çekoslovakî – Ne ev e, ewa din.6- Hewa, gaza ku mirov pê bêhna xwe didin û distînin (berepaş) - Çiqas, pirsek – Pronavê yekem. 7- Navekî zilaman – kesê yekem. 8- Li himber, vajayî, alîyê din – Cejn, pîrozbahî. 9- Xwarina şîrîn – Pêxemberek. 10- Mehek – Dewlemend, sermayedar, malmezin.

**Serejêr:** 1- Paytextê Împaratorîya Medya – Kar, xebat (berepaş). 2- Belê, qebûlkirin – Çûk û teyrikek. 3- Sêva piçûk, sêva ku nuh li darê dikeve – Bi Ingilîzî "0 - sifir". 4- Mal, malî, hejmara kesên malê, xanî (berepaş) – Pê xwarin tê çûtin. 5- Hilkirin, rakirin, ji bo gîha û zad tê bikaranîn (berepaş) – Bi Ingilîzî zilam, markayek kemyonan. 6- Qirn, sedsal, zîvirîn, tûjkirin (berepaş) – Bizmarê mezin. 7- Bi Tirkî "mêşa hingiv" (berepaş) – Kîn, nefret, heyf. 8- Dewlemend, maldar. 9- Xwedayek Sumeran – Tevlihev, ne rêk û pêk. 10- Bide min, bide (berepaş) – Dengê mîh û berxikan – Hacetek muzîkê. 11- Meskenê we, ciyê we – Pêxemberek. 12- Xebat, kirin, kar – Cil û bergê ku av tê re nare, cilên naylon û lastîkkirî.

## Xaçepirs



## Bersivên hejmara 77



# Şahiya sersalê ya KurdFM



Wêne: wenewan.com

Şahiya Şeva Sersalê û 1. Konsera KurdFM bi hest, deng û rengên kurdewarî li Darmstadtê hat lidarxistin. Sevîlay Ekîncî, Rojan Delyar, Dezz Deniz, Şevîn, Îbrahîm Rojhilat, Destan Dogan, Rênas Mîran mêvanan coşandin. Organîzatorên şevê ragihandin ji ber hefteyek beriya şahiyê Mîr Muzîkê çendîn 'hunermendên xwe' paşve kişandin, girseya hêvîkirî tevlî şahiyê nebû. Xwediyê Kurd FM Agirî Soran daxuyand: "Karê me biçûk in, lê hemû helwestên me bingeha gavên mezin in." Û mizgîniyekê dide: "Em hewil didin ku di mehên pêş de Şahiya 2. Ya KurdFM lidar bixin."